# Serpêhatiyên  kurda

Tîrêj

1992

Tîplêdan :

Mişel ê Osman

Ibrahîm Ebdî

mishelosman@hotmail.com

keser971@hotmail.com

www.tirej.name

ji weşanên kovara Zanîn -1-  Qamişlo

…………………………….

NAVEROK

19- Elî Remo ……………………………

20- Temir paşa ………………………….

21- Gur û Pez ……………………………

22- Îbo beg ………………………………

23- Sultan ……………………………….

24- Behwer bik yan behwer mek ………...

25- Hisên axayê Zîlî ………………………

26- Mîrê Milla …………………………….

27- Layê bazirgan …………………………

28- Êzingvan ………………………………

29- Cengebaz ………………………………

30- Piştî tengayê firehiye û piştî firehyê tengiye ..

31- Kurê serserî ………………………………

32- Xanîkê pîrê ……………………………….

33- Her kezî zerek , simbêl sorek li bendê ye …..

34- Şoreşa Şêx Se'îd ……………………………

35- Belengaz û du rêwî ………………………..

36- Xortek û keça keye …………………………

37- Eqilê xwe ji kûçkê xwe naskir …………….

38- Cemîlê Seyda ………………………………

# Pêşgotin

Gelê Kurd xwedî dîrokek pir dirêj û kevne . wî ,di avabûna şehirvanî (bajêrîtî حضارة) ya Rojhilata navîn û bi taybetî avabûna şehirvanîya (Mîzobotamya بلاد الرافدين ) rolek pir giring leyîstîye . Lê mixabin ku , îro gelê Kurd ji alî dewletên sitemkaran ve hatiye parkirin û hemû dewlemendîyên ( gencîneyên ) gelê Kurd , sererd , binerd , wêje , folklor ….. û herwekî wan , ji alî dewletên sitemkaran ve têne dizîn , û gelê Kurd bi xwe jî bindest û xizan mayîye .

Digel wilo jî , em dibînin ku torevan û nivîskarên me Kurda , pêşiya vê rewşa dijwar rawestî nemane , û dest bi danhev û nivîsandina tiştên mayîn kirine , û bi taybetî danheva folklorê bi hemî şaxên wê ve .

FOLKLORLOCYA :

Ev dahênana berdewamî di jîyana me de a rojane , ew bi xwe naveroka zanîna " folklor " e,ew zanîna ku bi navê " Hinerê Gel " û " hunerên Gelêrî "

hatiye nasîn û navdar . Lê navê folklor ê zanyarî " Pêmayên Gel " e .

Ev gotina han cara yekemîn zanyarê Ingilîzî ( Sêrcon Wilyam Tomz) (1803- 1885 ) pêkanîye .

Şirovekirina vê gotinê " folk- lor " ango " Penda Gel " e .

**Şaxên Foloklocya :**

Herwekî em dizanin , Foloklocya ; ewe warê ku mirov bi hemî dahênanên wî dide xwendin , weke ; zanebûn û pendên wî , ên ku herroj di jîyana wî de tê berçav kirin û çawa ew tiştên çêbûyî mirov ji mirov digre , piştre nifş ji nifşan digre û bi vî rengî bi sedên sala

têgotin , bê navê xwedîyê gotinan ên pêşî nas bikin , ji ber ku dibe pêmayên miletekî ….

Ew gotinên em çêla wan dikin , ew bi xwe çîrokin - stranin – serhatînin – pendin –lavijin – hinerin …….h .d

û ji ber ku pertûka di nav destên me de , şaxek ji Folklorlocya ye , emê şirovekirinekê biçûk bidn ( SERPÊHATÎ ) .

- Serhatî = Serpêhatî = Çîroka rastî :

Çi kar bi serê yekî bê , yan bibîne û ji bo xwe bike pend ('ebret ) , da ku careka din nekeve wê tengayîyê , yan xwe jê biparêze û dûrke , ev kar jêre dibêjin Serpêhatî ango ( Çîroka rastî ) , ev çîroka li demekî û deverekê çêbûye , wek ; Serhatîyên …Bedir-xan beg , Elî Remo , Îbo beg , Şêx Seîd …….h .d .

Cihê serhatî di Folklorlocya de bi gelemperî û di folklorlocya Kurdî de bi taybetî , cihekî pir mezin û fireh digre , û dibe hevalbend bi gelek rûpelên dîroka re . Seba vê yekê em karin bêjin ; ku Seydayê Tîrêj bi vê danheva xwe roleke baş leystiye , û tiştekî hêja kiriye , û em karin careke dî jî bêjin; seydayê Tîrêj daye ser şopa çend kesên hêja ên berî wî , mîna : Mîr Celadet – Cegerxwîn – Hacîyê Cindî – Ereb Şemo – Pîremerd – Sadiq Beha-dîn , ………h . d , van kesan xwe bi danhev û berhevkirina zargotina Kurdî mijûl kirine , da ku karibin zimanê bav û bapîra ji windabûn û dizîyê biparêzin .

Bêguman van kesan bi karên xweyî wêjeyî ,zimanê Kurdî parastin û pêşvebirin , û gerek em van kesan ji xwe re bikin çira û li ser şopa wan biçin, da ku em karibin zimanê xwe pêşdetir bibin û cihekî wêyî mezin di nav zimanên cîhanê de çêkin .

Seydayê Tîrêj û komkirina Serhatiyan :

Tîrêj , wekû em tev wî nas dikin hozanê milletê Kurdê Sûrî ye –ên kilasîk - , piştî rehmetî Cegerxwîn . berhemên Tîrêj ên di nav destên xwendevanan de , du dîwanin : 1- Dîwana Xelat 2- Dîwana Zozan .

Komkirina serpêhatiyan , tiştekî giringe û karekî netewî ye , divê tucar sistî nekeve vî karî .

Seydayê - Tîrêj – jî nemerdî nekirye di danheva serpêhatiyan û serdanên xwe digel şevbihêrkan de vala nebirye , çi tiştên ku dibhîst dinivîsand û komdikir , ta ku hejmarên serpêhatiyan gihan ( 45 ) serpêhatiyan .

Şanikek biçûk heye ; dibe ku Seyda jibîrkirye , gelek bûyer di van serpêhatiyan de hene , dem û deverên wan di dîroka ( tarîx ) gelê Kurd de belûne , lê mixabin Seyda xwe newestandiye û tu dem û dever nîşan nekirye. û tiştekî dî heye ; her û wer , dema me ji Seyda dipirsî ka te ev serhatî ji devê kê girtine , digot : min ji civatan girtine , bê ku navê kesekî bêje . û herwekî , hûnê di xwendina van serpêhatiyan de bibînin , ku zimanê pê hatiye gotin , zimanekî devkîye , mîna van çend gotinên jêrîn :

Mi = min , dibê = dibêjin , wa = wan ,dî = dît , ……h.t , û ev şanik herdem me ji Seyda re digot ; zimanê nivîsandinê ne wek zimanê devkîye ,lê Seyda ji a xwe danediket û digo : wilo bihêlin .

- Folklor armancek ji armancên kovara Zanîn e :

Dema ku Seyda gote me ; karekî wilo heye , ka çiqasî hûnê karibin alîkariyê bi min re bikin ? .

Wê çaxê pir kêfa me hat , ji ber me di nav xwe de got … vaye zû bi zû armencên kovara me pêk tên , ji ber ku me , di hejmara yekê de ji Zanîn gotibû ; parastina zargotina ( Folklora ) Kurdî û nivîsandina wê yek ji armencên kovarê ye .

- Karê ku me ji vê pertûkê re kirye eve :

Seyda pertûka xwe bi tîpên Erebî danîbû ( nivîsandibû ) . me guhertin tîpên Latînî , dûvre me li gor karîna xwe û bi derhênaneke sivik amede kir , piştî ku hevalê me hunermend ( Birhan Ebdî ) çend wêne ji me re saz kirin , paşê me çap kir ….

Ji ber van tiştan tevan me ser qaba pertûkê danîye ; ( ji weşanên kovara Zanîn ) .

Dawî : hêvîya me heye , ku gelê Kurd sûdeyekê ji vê pertûkê bibîne , û ev karê meyî biçûk bibe serboreke baş ji bona çapkirina pertûkin din .

Ebdul-baqî Huseynî

( kovara Zanîn )

…………………………………………………………..

# 1- cihê bav û bapîra

Zirrekan , topraxeke firehe di navbera parêzgeha ( Hisîça ) û bajarê (Serêkanîyê ) de ye . sê çem av têre derbas dibin .

Berê ew toprax havîngeha êl û koçerê Zirrekan bû . ji ber ku ew toprax hê bi navê e'şîra Zirrekan tête gotin , û çiyayê Ebdul-Ezîzê buhargeha wan bû . ji ber ku heya aneha deverin henin di çiyayê Ebdul-Ezîzê hîn bi navê wan tête gotin , wek ( Fêde Sînekan û Bîrê Sîpkan ) .

Di wê çaxê de , yekî Zirrekî û yekî Êzîdî ( ji çiyayê Şingalê ) dest-birakê hevdû bûn . rojekê , ê Êzîdî li cem ê Zirrekî bû mêvan , rabû berxek jêre serjêkir , piştî firavîna xwe xwar , rabû hinek ( Qizwan ) kire sênyê û li ber danî , ji ber ku êmîşê çiyayê Ebdul-Ezîzê Qizwan tenê bû .

Yê Êzîdî çend lib xwarin û rabû serxwe ji yê Zirrekî re got : Bira , dixwazim tu rojekê bê mêvanê min . piştî çend rojan , yê Zirrekî rabû û çû cem dest-birakê xwe li çiyayê Şingalê .

Yê Êzîdî jî berxek serjêkir , piştî yê Zirrekî firavîna xe xwar . yê Êzîdî rabû serxwe sênîk ji ( Hejîr ) ê çiyayê Şingalê ewê bi nav û deng li ber danî . piştî yê Zirrekî hinek xwar , yê Êzîdî jê pirsî û got : Bira , çiyayê Şingalê xweşe yan yê Ebdul-Ezîzê ?

Yê Zirrekî lê vegerand û got :

" Cihê bav û bapîra   Qizwan xweştirin ji Hejîra " .

……………………………………………………………………..

# 2- Hoste necar

Dibê carekê mîrê Mila û şêwirdarê xwe li bajarê " Mêrdîn " ê digeriyan , rastî avayekê hatin dîtin ku pîrekek li ser qesrê rûniştiye meriv ne bixwe û ne vexwe hema ji xwer lê binere , hingî spehî û bedewe .

Mîr pirsî , gelo ev avaniya kêye ?

- Jêre gotin : Avaniya yekî necar e .

Mîr vegerya dîwanê , û şand dû ê necar û jêre got : Ji niha û sê roj dî ez sê ferd kapeka dara ji te dixwazim , ji ber ku dinya zivistane û erd herîye , emê wê kapekê li ber lingê hespên leşker bireşînin ji bo t'elîmê , û eger tu neynî wê serê te bê jêkirin .

- Necar got : Mîrê min , bi Xwedê ji niha û heya du salê din ez bişuxulim , sê ferd kapek çênabe .

- Mîr got : Ez nizanim divê tu bînî .

Necar bi dilkî şikestî hate mal rûnişt , jina wî hate teniştê rûnişt . nerî ku mêrê wê bê made .

Jina wî gotê : Çima tu bê made ?

-Necar ; çi tiştê di nav wî û mîr de çêbû , jêre got .

- jina wî jêre got : Hoste necar , rakev weke her car , Xwedê yeke , dergeh hezar . ma tu ji kû zane , ku serê sibehê qiyasa tabûta mîr ji te re bê . ji ber ku pêşiyan gotine : ( Meriv tevdîra dike û Xwedê teqdîra dike ) .

Sibeh zû , dîtin hinek li derî dixin . necar rabû û qefist û lerizî û got :

- Va hatin min .

Jina wî rabû derî vekir , dît ku sê leşker li ber derîne û nexek di destê wan deye , ji jinikê re gotin : Mîr îşev mir û necar , divê tabûtekê jêre çêbike .

………………………………………………………

# 3- Ji xeraba werê buhar nayê

Dibê carekê , dilê keç û xortekî li gundekî dihev hebûn , çi wexta ku xort ramûsan ji keçkê bixwesta , keçkê didayê .

Salek xerab bi ser wan de hat , êmê pez nema , lodek tijî ka ya mala xort hebû . rojekê loda xwe vekirin . bavê keçkê got : Keça min ; rabe rahêj zembîla xwe û here mala filankes , zebîlek ka ji pezê me re werîne .

Keçik bi kêf rabû serxwe û rahijte zembîlê û berê xwe da loda kayê . xort di lodê de bû . keçkê gote xort : Vê zembîlê tije ka bik ji bo pezê me .

-Xort go :De ka ramûsankê bide min , ezê zembîlek ka bidim te .

- keçkê lê vegerand û got : Gelo çi gava te ramûsan ji min dixwest ma qey min nedida te ?! …. Xuyaye îro zembîla kayê bûye bi ramûsana , hema Willeh mi kaya te nebir û ji niha û pêve dostanîya min û te li hev heram be , û keçik vala vegerîya mal .

- Bav jê pirsî : Çima tu vala hat ?! .

- Keçkê go : Yabo nedan mi .

Dinya xêze-vêz bû , bû buhar , giya şîn bû , pez têr xwar , gundî derketin beriyî konê xwe vegirtin . rojekê xort bi tena kiras û xeftanê hîzar hêdî hêdî di ber konê bavê keçkê re derbas bû .

Keçik li bin kon teşî dirist , mirîşkek hate ber devê kon , keçkê bi doxa teşîyê bera mirîşkê da û bi dengekî bilind got : ( ji bo deng here yê xort )

Kiş terî li bayê ,

Ji xeraba werê buhar nayê ,

Ramûsanê qîza anîn zembîla kayê .

…………………………………………………………….

# 4- Şêrê Zozana

Salek xerab li Zozana hat , pezê Ferho kurê 'Ezêr axa ji Zozana daket berya Mêrdînê .

Elîyê Elî axayê Mila , wê buharê li kewkebê Mila êla xwe danîbû . dema pezê Ferho di ba-reşî êlê re buhirî . Elîyê Elî , ban çend xizmetkara kir , go : Herin çend berxa ji vî pezî bînin .

Xizmetkara êrîşî pez kirin , û her yekî bi stûyê berxekî girt . serşivan ban wan û got : Hûnê van berxan bi kû ve bibin ? .

-Xizmetkara gotin : Emê bibin ji Elîyê Elî re .

- Serşivan got : Ma hûn napirsin ev pezê kê ye ?

- Xizmetkara gotin : Yê kê ye ?

-Serşivan got : Ev pezê Ferho kurê 'Ezêr axa ye .

Xizmetkara bê hemdê xwe berx berdan .

Serşivan kêfa wî hat û got : Hay-hay , ez bi gorîya serê axayê xwe bim , şêr li Zozana himîn jê tê , li beriya Mêrdînê gur dûşilikê dawê berxa berdidin .

…………………………………………………………..

# 5- Bajarê Heskîfê

Heskîfê , bajarekî bi nav û denge , di Kurdistana bakur de ye , kelehek asê têde heye , zindana xwînîya û mêrkuja ye .

Di wextekê de , " Ihsan Kêf " hebû , li ber dewleta Osmaniya rabû , û şerkir . paşê dewletê " Hesen Kêf " girt . û kir wê kelehê . keleh li cihekî bilinde û li quntara çiyayê kelehê ava şetê Cizîrê derbas dibe .

Dewletê fermanek derxist ku piştî sê mehan wê " Hesen Kêf " bi darve bê daliqandin . " Hesen Kêf " şand mala xwe û got : Divê ku hûn hespê min û sê berana bi hev re bi qinê gwîza û navkê beruwa sê mehan xwedî bikin , û her mehê beranekî serjêbikin û serê wî ji min re bişînin , mala wî , weke wî got , her mek beranekî serjêdikin , meha pêşîn serê beran jê re şandin , " Hesen Kêf " , serê beran şikand , dît ku mejyê wî nerm bû ye . meha didwa , beranê didwa serjêkrin , û serî jê re şandin , dema serê wî şikand , dît ku mejyê wî bûye wek dew , meha sisiya beranê sisya serjêkirin , û serî jê re şandin , dema serî şikand nerî ku navê mejî di serî de nemaye bûye wek avê .

"Hesen Kêf " wê çaxê naskir , hiş di serê hespê wî de nemaye ji bitirbûnê . wê çaxê naskir ku berê hespê xwe bide kûderê wê here . piştî sê mehê "Hesen Kêf " di zindanê de bihûrî , " Hesen Kêf " anîn ber darê sêpî yê ku wî bidarvekin . jê re gotin : Tiştekî ji xwe re bixwaze . " Hesen Kêf " got : Mi divê du se'eta hûn destûra min bidin li hespê xwe siwar bim cirîda pê berdim , paşê min bikujin .

Dewletê destûra wî da , hespê wî jê re anîn , serja wî lêkirin û hevsar kirin. Rabû lê siwar bû , û di wê meydanê de çû û hat . heya serê hesp germ bû . paşê berê hesp da berjêr , hesp ji kelehê xwe avêt , dibêjin ; lingê wî li hewa çar-gav dikir dema hesp gihişt erdê herdû lingên wî yê pêşî ketin bejê û herû lingên paşî ketin çem , mixabin pişta hesp şikest , belê siwar xwe xelaskir .

……………………………………………………………………..

# 6- Ferho kurê E'zêr axa

Dibê yekî ji Ferho pirsî : Gelo te kes ji xwe mêrxastir dîtiye ? . Ferho got : Belê , mi ji xwe mêrxastir dît .

Ez û çend peyayê xwe li serê çiyakî bûn , piştî nîvro me dî pîrekek buxçika wê di bin çengê wê de ye û hate cem me , got : Gelî bira , ez ji mêrê xwe xeyidîme , û mala bavê mi dûre , ez îşev nema dighêm , dixwazim li cem we bim heya sibehê .

Mi got : Keça mi xemnake .

Bû şev , mi cihê wê nêzîkî cihê xwe danî û mi şûr kir navbera xwe û wê û em razan . şev zîz bû em di xew dene , mi dî ji nişka ve qîrîn ji wê pîrekê hat , dema em şiyar bûn , me dî ka tebak tê dahat û ji nav me revand . hinekî me da pey lê şevreşbû em bi ser venebûn .rûreşîk giran wê şevê bi ser me de hat , bû sibeh , me dî ku peyak şûrê wî li milê wî ye , hat cem me piştî silav kir , got : Gelî bira pîrekek doh xeyidî bû di vir re nebuhirî bû , kesî ji we wê nedî .

Min lê vegerand û got : Belê ezbenî .şevê dî li cem me bû , lê ma ez çi bêjim , mixabin , tebakî ji nav me revand , em bi dû ketin , lê şevreşbû , em bi servenebûn . ez rabûm mi ew peya anî ser şopê , wî şop girt û çû . piştî du se'eta mi dî vegeriya û serê şêrekî di destê wî de ye , di ber mi re derbasbû û li me hoveneda , min banê kirê û got :Bira va buxçika wê li cem me ye . peya li min vegerand û got : Ew

buxçik li te bimbarek be , hêja ye ku tu cilê wê li xweke û çarîka wê bi serê xwe de , çawa tebakî dev genî wê jinê ji nav we birevîne û desthilanîn ji we çênebe .

Mi ew peye ji xwe mêr-xastir dît .

………………………………………………………

# 7- Mîrê Hekarya

Dibê carekê Mîrê Hekarya û şêwirdarê xwe derketin geşt û seyranê , nav bax û rezan , dunya li wan germ bû , li bin darekê rûniştin , dibê xewa mîr hat , mîr serê xwe li ser çoga şêwirdarê xwe danî û raza .

Şêwirdar nerî ziyakî mara ji nav dehlê derket û berê xwe da wan . şêwirdar xincera xwe ji kalan derêxist û kir destê xwe ku mar pê bitirsîne , lê mar dema xincer di destê wî de dît berepaş vegeriya û ket nav dehlê û winda bû .

Hê xincer di destê şêwirdar de ye , mîr çavên xwe vekir , mîr lê nerî û got: - Çima tê min bikuje ezbenî ?!

-Şêwirdar ma heyirî , zane ku bêje , mîr jê yeqîn nake , ji ber ku mar winda bû , go : Mîrê min herwekî tu dibînî . ( herdû vegeriyan mal ) .

Mîr jê re got : destê min lê te nagere ku ez te bikujim , ji ber ku tu a'qilmendekî mezine , lê divê tu li vî welatî nemîne .

Şêwirdar ji welat derket , hat welatekî dî . aşek li wî gundî hebû , bû qeraşê wî aşî .

Mîr rabû şêwirdarekî dî ji xwe re danî . lê li tevgera wî nerî neket serê wî , ew guhert bi yekî dî , ew jî neket serê wî , mîr gelekî li

şêwirdarê xweyî berê poşman bû , û got : Xwezî birastî mi zanîba ku çima wilo kir ?! .

Mîr rabû şand dû keyakî a'qilmend û jê re got : Ez dixwazim tu berxekî bîne û em wî berxî biwezinînin , bê çend weqî derdikeve , û tê bibe cem xwe heya salekê , ew berx weqîyek kêm jê derkeve ezê te bikujim , û zêde derkeve ezê te bikujim .

Ew keye rabû ji xwe re geriya û dipirse ; ka ev berx wê çwa ne kêm bike û ne zêde bike ! .

Piştî gelekî geryaye , hatiye ber dîwarê wî aşî rûniştiye , ji te'ba gerê . qeraş , piştî ervan temam bû , xwest ku here malê , nerî merivek ku li ber dîwarê êş rûniştiye . banêkirê û bir mala xwe , piştî firavîn xwarin , qeraş jê pirsî û got : Ez te xerîb dibînim , tu ne ji vî welatî ye ? .

- Keye jê re got : ez ji welatê mîrê Hekaryame . wê çaxê qeraş keserek giran veda û got : Te xêre ?

- Mêrik çi tiştê di nav wî û mîr de çêbûye jê re got .

- Qeraş jê re got : ev sehale , ku tu çû mal , çêlîkekî gura peyda bik û li hember berx girêde , tu çi êmî bide wî berxî lê naguvire , wê wek xwe bimîne , ji ber ku dijminê wî li hember wî ye . lê ê qeraş xweş naskir daxwaza mîr çi ye , ( daxwaza mîr dîtina wî ye ) .

Mêrik berî da malê û çêlîkek gura peyda kir û li hemberî berx girêda . sal wergeriya salê , keye berxê xwe anî cem mîr . dema qapan kirin , mîr dî ku wî berxî ne kêm kirye û ne zêde kirye .

-Mîr jê re got : Kê ev rê da ber te ? .

- Keye got : Yekî qeraş ev rê da ber min .

- Mîr go : Yekî çawa bû ew qeraş ?! .

- Keye rabû wesfê wî jê re got .

- Mîr naskir ku şêwirdarê wî yê berê ye .

Mîr rabû çend siwar bi xwe re siwarkirin , û hatin wî gundî û şêwirdarê xwe anî cem xwe , ji nû ve mîr jê pirsî ; ka rast bêje , çima te wilo kir ? .

- Şêwirdar ji nû ve weke pêr çêbibû ji mîr re got çawa ziyayê mara hat , çawa lê da xincerê , çawa revya ket nav dehlê , û te çavê xwe vekir . mîrê min ; wê çaxê mi çi bigota te bawer ne dikir , kela te germ bû , lê niha ez behwerim ku te ji min behwerkir û rastî ev bû .

…………………………………………………………........

# 8- Marê qut û gora sipî

Dibên merivek rezekî wî baş hebû , marek di bin rezê wî de cihê xwe çêkirbû . çi sibeha ku biçûwa nav rezê xwe , ewî marî zêrek li ser riya wî datanî .

Demek dirêj wî û mar bi hev re bihurandin , dibê tumayî ket dilê xwedîyê rez , got : Eger gencek ( yanî xezînak ) di bin vî marî de tuneba , her roj zêrek nedavêt ser riya min , divê ez vî marî bikujim û bin cihê wî vedim , gencê tevdî ji xwe re derxim .

Sibehê rahişt tevrikê xwe û berê xwe da rez wek her car . mar wek berê zêrek jê re danî û vegerya . lê berî ku mar bighê cihê xwe mêrik tevir anî mar , wek buhustikê ji terya mar birrî , û mar çû cihê xwe .

Ya dina rojê kurê mêrik hate nav rez , mar ji paş ve hat û bi kurik veda û kurk kuşt . nîro bû , kurik nehat mal , dê û bavê wî lê gerîyan nedîtin . lê yekî gundî go mi vê sibehê kurê we dî çû nav rez . dema hatin nav rez dîn ku mar bi kurê wan vedaye û kurik mirye . xwedîyê

rez rabû gora layê xwe di nav rez de kola û veşart û qubeke sipî li ser gora layê xwe avakir .

Rojekê xwedîyê rez û yekî gundî hatin nav rez , mêrik li hember cihê mar sekinî û banê kir , birayê mar were wek berê emê bibin dostê hev , yê gundî lê vegerand û got : Ma hûnê çawa ji nû ve bi hev bawer bibin , tirba sipî û marê qut .

…………………………………………………………………

# 9- Bello

Dêrûna Qulinga navê gundekî ji gundên Aşîta ye , li topraxa bajarê Qamişlo ye . dibên berê keyak li wî gundî hebû , jêre digotin " Bello " .

" Bello " merivkî çavfireh bû , comerd û camêr bû , jar û belengaza xwe lêdigirtin , nexasim ew kesên ku ji zilma ( Sedûnê Sor ) direviyan , dihatin gundê wî , ji xwe re kar dikirin .

Sedûnê Sor , xwedîkê ( Ça'lê ) , tim navê Bello bi qencî dibhîst , dixwest ku carekê wî bibîne .( Bello ne merivkî ber bi çav bû , merivkî kin û rû bi xurî bû ) . rojekê Sedûnê Sor deh siwar bi xwe re hilanîn ji gundê Ça'lê berê xwe dan Dêrûna Qulinga , gundê Bello . hatin gund , hespên wan girêdan , kulav û palgeh danîn , Sedûn û peyên xwe rûniştin , û Bello diçî û tê , hê wî nasnakin .

Sedûn got : Ka Bello ? divê bê em bibînin .

Bello got : Ez Bellome Sedûn axa .

Dema Sedûn axa Bello dît , got : Xwezî ez nehatima û mi tu nedîba , bes mi navê te bihîstiba . Bello dengnekir , ma wê çi bêje , şîva an çêkirin , piştî şîvê Bello rabû û bi nav gund ket , çi kesê Omerî ê ji e'şîra Sedûnê Sor anîn û ji wan re got : Dixwazim yek bi yek hûnê

silavê li Sedûn bikin û li tenişta hevdû rûnên .( tevde hatin , silav li Sedûn kirin û li tenişta hevdû rûniştin ) .

Sedûn ji Bello pirsî : Ev çi kesin ?! … xuyaye ev hemû mi nas dikin .

Bello got : Belê Sedûn axa , ev hemû e'şîra tene û ji zilma te revyane û xwe li tor û bextê Bello girtine , ev Bello ye ku nakeve çav te .

……………………………………………………………….

# 10- Tehte – Beş

Gurrik , navê gundekî ji gundên Kurdistana bakure , di texma parêzgeha Mêrdînê de ye , li quntara çiyayê Omeriya ye . gundî hemû cotkar û karkerin .

Tehtek dûz û fireh li ro-avayê gund heye , di ber zinarekî de ye , kanîk ava sar û cemidî di bin wê tehtê dertê , navê wê Tehte-Beşê ye .

Cotkarî dema cotê xwe berdidin û karker dema ji karên xwe tên , tên ser wê tehtê , têr av vedxwin û li ser wê tehtê paldidin , xwe rehet dikin .

Dibê xortek ji wî gundî çûye Şamê ji bo kar û xebatê , li wir jinek ji xwer anîye , çi wexta ew xort radibe û rûdinê dibêje : Ax Tehte-Beş . ne salek ne dido , tim Tehte-Beş li ser zimanê wî ye .

Jina wî rokê jê re got : divê ku em herin gundê te û wê Tehte-Beşê bi çavên  xwe bibînim . rabûne ji Şamê hatine gundê Gurrik û xort hatiye ser wê tehtê paldaye û kêfa xwe gelekî anîye .

Jina wî got : Ma ev gundê te ye , ev Tehte- Beşê ye ?! .

Xort got : Belê xatûna min , ev Gurrike û ev Tehte- Beşê ye .

Jina wî got : Ma ka çi lê heye ?! min digot ; qey Gurrik wek Şamê xweşe .

Mêrik lê vegerand û got : Belê xatûna min , pêşyan gotine : " Şam şekire , lê welat jê şêrîntire " .

…………………………………………………………………

# 11- Efûkirin xweşe bi mêranî

Norşîn , gundekî ava ye , di Kurdistana bakur de ye , di heyamekî de , paytextê Hezret bû.Hezret a'limekî mezin bû ( pîrê terîqa Neqişbendî bû).

Dibê di wextê Hezret de , merivekî ji gund , yekî gundî kuşt . piştî ku bû xwînî , mala xwe barkir û çû gundekî dî .

Piştî sê sala , ewê xwînî şuxulekî wî li ( Norşîn) ê çêdibe . radibe û bi şev tê gund mala cîranekî , mêrik bi rext û tifinge . merivên yên kuştî , dibhîzin ku xwînîyê wan li mala filankese .

Çar peya bi rext û tifing dora mala wî digrin , xwedyê malê nemerdî nekir , hema rabû û berê xwe da Hezret û jê re got . Hezret rabû serxwe û hat cem wan peya û gelek hêvî ji wan kir , ku vê derbê dev jê berdin , ji bo xatirê Xwedê , û ji bo xatirê Tekyê û ji bo xatirê wî .

Belê van peya qîma xwe nanîn û jê re gotin : Seydayê Hezret , bi Xwedê ku niha ev xwînî di bin cibê te de be , em tê nabhurin . Hezret polî-poşman vegerya mal . paşê , evan peyan ji hevdû re gotin : Ev xwînî , bi vî awayî dernakeve , ya qenc ewe , piştî rojava em herin di rêya wî kevin . dema ku em herin ewê ji gund derkeve û li ser rê emê wî bigrin .

Rabû xwe ji ber wê malê dan alî û çûn ketin rêya wî . xwedyê malê ji yê xwînî re got : Bira va çûn de rabe ji gund derkeve .yê xwînî

rahişt rext û tifinga xwe û bi ser rê ket . dîna ku dît ji nişka ve her çar peya lê hatin hev û girtin . tifinga wî jê standin û herdû destên wî li pişt wî girêdan û berê wî dan Tekya Hezret .

Hezret bi qerebalixa wan derket , dît ku yê xwînî di ber herçara deye û anîne Tekyê . ji Hezret re gotin : Seyda , anha me da xatirê Xwedê û yê Tekyê û yê te , eger wê çaxa tu hat , me bida xatirê te gelek zimandirêj hebûn , wê bigotina ji tirsa re dan xatirê Hezret , ji ber ku mêrik bi rext û tifing bû , lê niha tu halê wî dibînî .

Wê gavê Hezret pir kêfxweş bû , û got : Raste…efûkirin xweşe bi mêranî .

…………………………………………………….

# 12- Ecûrê tal

Dibê xortekê ji xwer jinek anî , û pir ji jina xwe hezdikir . her roj diçû nav mextî e'cûrê tal û şêrîn tanî , e'cûrê tal dida diya xwe û yê şêrîn dida jina xwe .( jina wî nizanîbû ku mêrê wê wilo dike ) .

Rojekê , jinkê nerî ku xesw wê e'cûra dimûçîne ( tamdike ) û davêje .

Bûka wê jê pirsî : Çima tu e'cûra davêje ?! .

Xeswa wê got : Kurê min timî e'cûrê tal dide min .

Jinkê ji mêrê xwe pirsî ; ka gelo raste an derewe ? .

Mêrik got : Raste . jinkê rabû xwe bi zor ji wî mêrî berda , û çû yekî şîrhelal ji xwe re kir .

Xwedê çar law dan jinkê . mêrê wê yê kevin jinek ji xwe re anî .xwedê sê law danê . lawêd wê jinkê pir başin û di bin emrê wê denin . lawên mêrik tim lêdixin û sixêfa didinê .

Adeta berê , buharî derdiketin buhariya , rojekê mala mêrik barkirin û bavê xwe li şûnwara hiştin . mêrik dî , koçek dî di wir re dubhire , yeqîn jina wî ya berê konê wê di nav wê koçê de ye .

Jinkê nerî , ku wa yekî kal li şûnwara maye . ban layên xwe kir û gote wan : Herin wî kalî bînin , bê ew çi kese ?! .

Dema hatin , yê kal birin cem diya xwe , jinkê hevalê xwe naskir û jê re got : Çima tu li şûna wara maye ?

Mêrik got : Kurêd min nebaşin , xwestin min li şûna wara bihêlin ku tebayên çola goştê min bixun .

Jinkê got : Ma tu min nas dike ? ez ew kesim ya ku te e'cûrê şêrîn dida min û e'cûrê tal dida diya xwe , tu xweş zanibe ev tişt tev ji gunhê diya tene . binêre ev her çar kurên min , çiqas bi ya min dikin û kurên te çi tînin serê te ji ber ku pêşiyan gotine : ( Lema tal , e'cûrê tal lê dikeve ) .

………………………………………………………………….

# 13- Weynê jinan

Dibêjin , rojekê ji rojan zilamek û jina xwe dan berhev ser mersela weynê jinan .

-Mêrik got : Weyn , weynê mêrane , ne ê jinanin .

-Jinkê got:Weyn ê jinanin,ne yê mêrani.(herdû negihan tu tiştî bi hev re ) .

- Jinkê got : De tê bibînî weyn yê kêne .!!!!!!....

A dinî rojê , mêrik serê sibehê çû cot , jinik jî rabû , û şeş masîyên biçûk peydakirin , û taştiya mêrê xwe hazir kir , û çû ser e'rd , di rê

de , berî ku bighê mêrê xwe jinkê di kêleka xeta paşî de , her şeş masî veşartin , her yek pênc şeş gav di nav wan de hiştin .

Mêrik taştiya xwe xwar û rabû berê xwe da cot. di xeta paşî de , piştî (5-6) gava dît ku masîk di ber cotê wî de rabû , û her ku pêve diçe masiyekî dibîne , ta bûn ( 6 ) masî , kêfa mêrik hat û bang jina xwe kir , û got :Vane şeş masî li ber cotê min rabûne , de here mal û ji min re bike firavîn .

Jinik hate mal , masî veşartin û mergeyek têr pîvaz ji mêrê xwe re çêkir . Dema mêrik ji cot hate mal , …..jinkê mesefa merga têr pîvaz ji mêrê xwe re danî .

-Mêrik got : Ka masî ?! .

-Jinik kenî û got : Masiyê çi , ma tu dîn bûye ! ( gotinek ji mêrik û yek ji jinkê , herdû bi hevketin ) .

Cîran bi wan ve hatin , gotin : Çima hûn bi hev dikevin ?! .

-Jinkê got : ji mêrê min bipirsin .

-Cîrana gotin : Te xêre ?! .

-Mêrik got : Malava , îro şeş masî li ber cotê min rabûn û min dane jina xwe , da ku bike firavîn û va merge çêkirye .

Bû tiq-tiqa cîranan , pê keniyan û gotin : Kuro ma tu dîn bûye , masî di deryan ( behran ) de ne , çawa li ber cotê te rabûne !!!!!! .

-Mêrik ji neçarî got :Bavo dibe ku ez şaşim , rabû li ber jina xwe geriya , û li hevhatin .

Piştî ku cîran rabûn çûn ……. Jinkê , masî qelandin û li ber mêrê xwe danî , û jê re got : Weyn ê jinanin an ê mêranin ?! .

…………………………………………………………..

# 14-Xurme

Lawikekî li cem melakî Quran dixwend . her sibeh diya wî çend lib xurme didanê û diçû xwendinê . xurmê lawik neman , lawik xeyidî û got : Divê hûn xurma ji min re peyda bikin .

Çi sibeha hebû , lawik bê şer ji bo xurma ne diçû xwendinê .

Rojekê diya wî hat cem mele û jê re got : Seyda , xurmê me neman , her sibeh lawik bi me re ji bo xurma şer dike , ez hêvî dikim ku tu wî "qani"(قانع) . bike , ji bo ku xurma ji me nexwaze .

Seyda go : Xemnake , piştî mehek dî ezê wî " qani " bikim . meha lawik qediya bi vî karî . lê piştî wê mehê nema xurme xwestin .

Diya lawik hate cem mele gotê : Seyda , ez dixwazim tu bêje çima piştî mehekê te ji layê mi re got ? .

-Seyda kenya û gote jinkê : Xuşkê , ez jî wek kurê te mi tim xurme dixwarin , xurmê min jî neman , mi tim bi kurê xwe re şer dikir ji bo ku xurma ji min re bîne , lê dema ku tu hat û gilîyê layê xwe te bi mi kir , ji wê rojê de mi terka xurma kir , piştî mehekê min nih ji layê te re got , ji bo gotina min tasîrê li lawê te bike , lê dema ku min jî xurme bixwarina , gotina min bi serê layê te de ne diçû .

……………………………………………………………………

# 15-Şebeşê Batê

Batê , navê gundekî ye di Kurdistana bakur de ye . ( şebeşên wê bi nav û dengin ) . mextiya diçînin …. Dema şebeş li lema dikevin , çend lemên qenc dihêlin û şebeşê wan leman tevî jêdikin , her lemek şebeşekî tenê di wê lema qenc de dihêlin .

Cera tînin , erdê dikolin û wan cera dikin erdê , devê cera himberî erdê dihêlin û wan şebeşa dikin wan cera , ew şebeş tê de mezin dibin , dibin wek meznaya cer . payiza paşî wan şebeşan ji lemên wan dikin û tev li-cera tînin mal , axa sor li hundirekî belav dikin û wan şebeşa li ser bistîka wan datînin .dawîya zivistanê wan şebeşa tevlî cer dibin bajar û şehristanan difroşin .

Dibê merivekî ji wî gundî carekî şebeşek diyarî hakimê bajarekî kitiye . hate dîwana wî , şebeş li ser masa hakim danî .

Di wê rojê de , çend girtî li dîwanê bûn , hakim ew mehkeme dikirin . kêfa hakim ji şebeş re hat , û ji xwedyê şebeş re got : Ezbenî li vir be , heta van girtiyan mehkeme bikin .

Xwediyê şebeş li wir ma , heta ew girtî tev de îfadebûn , hakim emir da , ku wan girtiyan dîsa vegerînin zindanê .

Leşker tev de dan ber xwe ta xwedyê şebeş jî birin zindanê . piştî şeş meha , ew girtî anîn mehkemê tevlî xwedyê şebeş . hakim îfada wan girt , bang xwedyê şebeş kir go : Ma ya te çiye ? ..çi gunhê te ye ? …..

-Xwedyê şebeş got : Hakimê min , gunhê min giran , ez xwedyê şebeşim .

Nuh şebeş hat bîra hakim , û pir poşman bû , û e'zra xwe jê xwest . hakim bang leşkerekî kir û gotê ; vî merivî bibe xezîna pera û debwa silah , çi dibe bela bibe .

Yê leşker mêrik da ber xwe û anî xezînê . mêrik rahişte mecîdîkî tenê . anî debwa çek û silahan , rahişt tefşokî tenê . paşê mêrik vegerand cem hakim.

Hakim dî , ku ji mecîdîkî û tefşokî pêve nanîye bi xwe re .

-Hakim jê pirsî : Çima ev tenê te anîme .

-Mêrik got : Hakimê min , di zindanê de min mecîdîyek ji yekî deyn kir bû , ezê herim mecîdîyê wî bidmê , lê ev tefşo ezê herim wê lema ku ew şebeşa min ji tr re anî çêkirbû , ezê bi vî tefşoyî ji qurm de jêkim , ew şebeşê ku bû sebeba girtina minî şeş meha .

……………………………………………………………………..

# 16- Goristan

Merivek , di ber goristanê re derbas bû ,dît ku jinek li ber gorekê digrî . Mêrik hate cem , û jê pirsî ; evê mirî çî te ye .

Jinkê got : Mêrê mine .

Mêrik got : Gelo merivekî çawa bû ?

Jinkê lê vegerand û got : Rehma Xwedê lê be , pir merivkî qenc bû , ne di xêra kesî de bû , û ne di şera kesî de bû .

Mêrik hema rabû ser xwe û got : Rehma Xwedê ne lê be , ew kesê ne di xêr û şera xelkê de be , mirna wî ji saxya çêtire .

……………………………………………………………………

# 17- Kalê cotkarî

Dibê carekê du rêwî bi hev re bûn heval , rastî kalekî hatin , ku kalo cot dike.

Yekî ji wan rêwyan , jê pirsî û got : Kalo , çima te virnî çand ?.

-Kalo : Kurê min , min hilî çand virnî ket .

- Mêrik : Kalo , dûrê te çawane ? .

- Kalo : Gelkî nêzîk bûne .

- Mêrik : Didwên te çawane ? .

- Kalo : Bûne sisê .

- Mêrik : Selefê siwara çawane ? .

- Kalo : Kelo-kelo bûne .

- Mêrik : Zozan çawa ye ? .

- Kalo : Ji berfê , sipî dike weke kake .

…………………………………………………….

# 18- Bedir-Xan beg

Dibêjin dewleta Osmanlî , Bedir-Xan beg - mîrê Botan – ji bajarê Cizîrê fermanî kir . Bedir –Xan beg hate gundekî ji gundê dora Amûdê , navê wî gundî ( Xerezê ) bû .

Keyê gund jê re digotin ; Xelef kurê Hisênê Çeto . keye jê pirsî : Bira tu çi digere ? ……lê mixabin ew nas nedikir .

- Bedir-Xan beg got : Ezbenî li karekî digerim .

- Keye jê re got :Berî çend rojan qehweçîyê min çûye , ma tu nikarî qehwê çêbike ? .

- Bedir-Xan beg got : Belê .

- Keye gotê : Başe , hinek keroşkê mi jî hene , tê rojê du carî nan ji wan re hûr bike .

- Bedir-Xan beg got : Ez nikarim nan hûr bikim , ev karê zaroka ye .

- Keye go : Xemnake , ka bê tu çi dixwaze ? .

- Bedir-Xan beg got : Ez tiştekî naxwazim ji nanê xwe pêve , û ya dî ez naçim doşek û palgeha ji alî malê naynim ji bo mêvana . ( herduwa qîma xwe bi vî awî anîn ) .

Bedir-Xan beg sê sala qehweçîtî kir . rojekê keye li rehwana xwe siwar bû û çû Mêrdînê , êvarê ji bajêr vegeriya , gundî hatin dorê û jê pirsîn : Keye çi li bajêr heye , çi tune ye ?! …

Keye got : tiştek tuneye , lê mi dî kaxet li derîyê dikana dixistin û dellal bandikir ku e'fwa Bedir-Xan beg hatiye .

- Bedir-Xan beg li ber qehwê rûniştiye û deng nekir . piştî civat belav bû , û çûn malê xwe , Bedir –Xan beg û keye tenê man .

Berdir-Xan beg berê xwe da keye û got :Xelef te got e'fwa Bedir-Xan beg hatiy û kaxet li dîwarê dikana dixistin , tu dikare here kaxetekê ji wan kaxeta ji min re bîne ? .

- Keye ji nû ve bala xwe da qehweçyê xwe . lê Bedir-Xan beg got : Xelef , ez niha qehweçîme , ez hêvî dikim bela ev tişt di nav min û te de be , kengî e'fwa min hat wê çaxê ez Bedir-Xan begim .

- Keye serê sibehê rabû ser xwe , li qantira rehwan siwar bû , berê xwe da bajarê Mêrdînê , kaxetek ji dîwarekî rakir û hat .

Dema bi sirtê Xerezê ket , çi binêre , Xerezê ji toz û e'caca siwara nema xuyaye !. yeqîn hayê Botan jê hebû ku Bedir-Xan beg li Xerezê qehweçiye .

- Xelef hat mal , berê xwe da odê , dî ku Bedir-Xan beg qapûtê wî lêye û taca wî li ser serê wî ye .

- Bedir-Xan beg got : Xelef , aniha ez Bedir-Xan begim . Xelef pir fedîkir .

- Bedir-Xan beg got : Fedîmek , dewranê dinyayê evin , duh qehweçîbûm , îro Mîrim .

Bedir-Xan beg rabû xatir ji keye û gundiyan tevan xwest û ji Xelef re got : Salek dî serkî bide min .

Sal wergeriya salê , Xelef û gundîkî xwe çûn Cizîra Botan û hatin dîwanê .

Bedir-Xan beg hate pêşya wan û qîmetekî pir mezin da wan û dîsa li gundiya tevdan pirsî û paşê gotê : Gelo hîn keroşkê te henin ? ..

Keye hinkî fedîkir û serê xwe bera ber xwe da , mîr hinek henek pêkir û xweşkir , heya ku fedya xwe revand .

Xelef û hevalê xwe heft rojan li cem Mîr man , piştî heft rojan destûra xwe ji mîr xwestin .

Mîr rabû gelek zêr û pere dan Xelef û hevalê wî . dibêjin heya îro , dewlemendiya Xelefê Hisên ê Çeto û zarwêd wî ji zêrêd Bedir-Xan begin .

………………………………………………………………..

# 19- Elî yê Remo

Elî yê Remo , axayê e'şîra Rema bû , li deşta Bişêriyê . dibê Turka fermana wî rakir . berê xwe da berya Mêrdînê , hat gundekî li wê bi cî bû . kesî Elî yê Remo nas nedikir .

Sibehê wê bihata odê û li dawiya zilama rûdinişt , û carna li ser enîşka paldida .

Sibehekê , Elîyê Remo li odêye , li hêla zilama rûniştiye , gundiyan gotin keyê gund ; gavanê dewarêd me derket û çû mala xwe , dewar bê gavan mane , ka em çawa bikin ? .

- Keye got : Ka em binêrin , belkî gavanekî ji xwe re peyda bikin . keye zîvirî ser Elîyê Remo û jê re got : Bira , ma tu çi karî dike ? .

- Elîyê Remo got : Mi tu kar hê ji xwer nediye .

- Keye gotê : Hema rabe here ber dewara , rojê nanê xwe bistîn bê minet û serê dewar e'lbek genim û yek ceh .

- Elîyê Remo qîma xwe anî , û rahişte darê gavanyê .

Rojekê dinya havîne , kelkela germê ye , Elêyê Remo darê wî di destê wî deye û dewara dide hev , ku wan bibe çêrê , dî ku şeş cendirme ji riya bakur ve tên , berê wan li wî gundiye . dema hatin gund , serekê cendirma (Onbaşîye ) bala xwe da wî gavanî naskir , ku Elîyê Remo ye , ji hevalên xwe re got : Herin odê , ezê l dû we bêm .

Piştî hevalên wî çûn , onbaşî berê xwe da Elîyê Remo û li cem peya bû , û got : Merheba Elîyê Remo .

Elîyê Remo lê vegerand û got : Ezbenî , ez ne Elîyê Remome , ez gavanê gundim .

- Onbaşî go : Elî ez qenc te nas dikim , û gelek cara min nanê oda te xwariye , netirse , em ne li te digerin .

- Elîyê Remo got :Ya onbaşî , ez hêvîdarim tu ji kesî re nebêje , û bila kes mi nas neke .

Elîyê Remo dewar birin çolê onbaşî hat odê , keye nanê wan çêkir . dema nanê xwe xwarin û rabûn ser xwe ku herin , onbaşî di nav xwe û keye de got : Tu zane ku gavanê gundê we Elîyê Remoye ! , axayê e'şîra Rema ye ! .

Wê çaxê , xwîn di rûyê keye de nema , rabû ban çend gundiya kir û ji wan re got : Hûn dizanin ku gavanê me Elîyê Remo ye , de bilivin ; em herin cem û xwe bavênê .

Elîyê Remo dî ku gundî û keye ji gund rêz bûn û berê xwe dane wî , naskir ku onbaşî ji wan re gotiye . keye û gundî gihan cem Elîyê Remo . keye serê xwe kir pêxa Elîyê Remo û giriya û got : Elî ! , ma çima te xwe bi me neda naskirin ?! .

Elî li ber dilê keye da , û tev de hatin gund , wê rojê qedir û qîmetekî mezin dan Elî . lê Elîyê Remo , piştî ji odê hat mal ji jina xwe re got : Rabe , em herin cihê xwe , çi dibe bela bibe .

Elîyê Remo hat deşta Bişêriyê , dewleta Turkan pê hisiyan û girtin û Elîyê Remo kuştin .

……………………………………………………………………..

# 20- Temir Paşa

Dewleta Osmanlî fermana Temir Paşa rakir , Temir paşa xwe da alî ji ( Wêran Şehrê ) berê xwe da bajarê Mûsilê .

Rojekê li ber dîwarekî rûniştî bû , çend zarokan li ber sîya dîwar bi kaba dileystin , qerebalix ket navbera du zarokan li ser kabekî , yek dibê hatiye yê dî dibê na ketiye .

Yekî ji wan zaroka got : Bi hev neçinin , me bextê Temiko qebûle . ( ji ber li wir navê xwe kirbû Temiko , ji bo kes wî nas neke ) .

- Go : Apê Temiko , binêre ev kab ketiye yan rabûye ?

- Temik paşa got : Kab ketiye .

- Xwedyê kab go : Bi Xwedê navê bext bi tr re tune , tu merivekî bêbexte .

- Temik paşa di dilê xwe de kenya û got : Karê dunyayê eve , piştî ku min e'şîrêd mezin bi bextê xwe li hev tanîn , îro zarok nema bextê min bi kabekî qebûl dikin .

…………………………………………………….

# 21- Gur û pez

Rojekê , ez li civatekê rûniştîbûm , kalek li tenişta min bû , mi go : Kalo bipeyiv , gotinê kala xweşin , tarîxîne .

Kalo rabû û peyivî : Belê kurê min , ez di zemanê xwe de , xortekî nîşandar bûm , derba min bi tifingê li erdê nediket .

Rojekê tifinga min li milê mine , ez hatim gundekî , li odê rûniştim , gundiya ji min re got : Ehmedo , va Xwedê îro te anî , gurek di ber wî zinarî de ye , tu tişt di pezê me de nehişt , hema li dawa berxa û mîha dixe û direvîne , belkî tu wî gurî bikuje û pezê me ji bela wî xelas bike .

- Mi gote wan : Ka werin cihê wî pêş min bikin . ( çend meriv hatin û cihê wî pêş mn kirin ) .

Ez ketim ber kevirekî , da ku dema gur derkeve , ez bibînim . ji nişka ve mi dî gur derket . min tifingek berdayê . gur pêre vegerya cihê xwe û mi zanîbû gulle lê ket . yên li cem mi gotin :Gulla te lê neket. mi go ; ez dizanim lê ket .

Em tev de hatin odê , wê şevê ez li wir mam .

Serê sibehê mi dî qerebalixek çêbû .

Em hatin , em çi binêrin ku ew gur derketiye der û gulle li sînga wî ketiye û hatiye kuştin .

E'cêba ku min dî gurekî pîr û kwîr û bê diran , ew gur himbêz kiriye û devê xwe danîye ser devê birîna wî , û ew jî bi ser de miriye .

Mi xweş naskir ku ew gurê pîr û bê diran diya wî bû . dawa berx û mîya jê re dibir , ji ber ku diran tunebûn , ku goşt bixwe , lê dawa pez bi xwe ji hev dikeve .

Kurê min ; ew tebakî çola bû , wisa ji diya xwe re qenc bû . lê tu xweş bizane niha zarokêd min berra mi dane û ez bi deriya ketime , rojê li oda camêrekî dixwim û vedixwim ….. em benî Adem evin , û rehma tebayê çola ji ya me insana çêtire .

……………………………………………………………

# 22- Îbo beg

Îbo beg mezinê e'şîrek ji e'şîrê Kurd li Serheda bû . kurekî Ermenî ji biçûkanî xwedî-kir bû , heya bû xort . di şerê cîhanê yê yekê de , ew xort bi navê  Xaçîk bû , bû serleşkerek ji leşkerên Rûsya Qeyserî , piştî ku Elmaniya şikest û zora wê çû . Rûs ket nav hin ji welatê Turkan ên jor , ji ber ku Osmanlî hevalê Elman bû .

Rojekê Xaçîk hate cem Îbo beg û jê re got : Bavo ez serleşkerikim di ceyşa Rûs

an de , metirse û ji cihê xwe dernekev ez nahêlim ku leşkerê Rûsî îşê xwe ji te bîne .

Îbo beg go : Pir başe kurê min, tu sax . e’şîrêd Heydera û Zîla û Hesena û e’şîrêd Îbo beg ji cihê xwe derketin ji tirsa Rûsa .

Îbo beg çar kurê wî hebûn . bankir kurêd xwe û got : Hûn jî herin ; ezê  tenê li ser her çar bûkêd xwe û keça xwe û jina xwe bimînim .

Kurêd wî jî daketin welatê Sûryayê . Îbo beg tenê li ser wan pîrekan ma . rojekê dî , ku kurê wî Xaçîk û çar qazanê Rûsa bi siwarî hatin odê .

Kulav û doşek ji wan re danîn , tifingê xwe b dîwar ve daliqandin , û li ser doşekan paldan .

Xaçîk , Îbo beg derxist ji derve û jê re got : Bavo ! , here her çar bûkêd xwe bîn ji va zabita re , bela kêfa xwe bi wan biqewitînin , û êvarê emê herin . Îbo beg go : Kurê mi xemnake ; ezê herim ji wan re bêjim , bila xwe kil û mirêk bikin û bên têkevin ber wan .

Îbo beg hat aliyê malê , bûkêd xwe û keça xwe û jina xwe tev civand û ev tişt ji wan re got : ka gotina we çiye ? , û em çi bikin ?! .

Keça wî hat û li ber sekinî , go : Bavo ! min bi demaça xweyî qerebelû bikuje , roja qiyametê , li dîwana Xwedê tu dawa min bi te re tune , û namûsa me biparêz . bûkêd wî jî û jina wî jê re gotin : Me bikuje û roja qiyametê tu daw û doza me bi te re tune .

Îbo beg rabû her çar bûkê xwe û keça xwe û jina xwe bi destê xwe kuştin , ji bo namûs û xîretê , paşê cercûrek dî li demançê xist û hate odê , dî ku tev paldayîne ser doşeka li bendî bûkane . Îbo beg her şar zabit tevlî Xaçîk jî kuştin , û ji Serheda bi tena xwe xelas bû . paşê Îbo beg ev çend gotin li ser halê xwe gotine :

Felekê çima te li me wa kir ?

Te serê xwe hejand qol û baskê xwe li bakir ,

Te sura bakî Qerejdaxî li mi rakir ,

Te mala dosta danî , te dilê neyara bi mi şa kir ,

Xelkê kufletê xwe ji nav Rûs xelas kir ,

Lê mi tenê mala xwe bi destê xwe xerakir .

……………………………………………

# 23 - **Sultan**

Berê adetek li nav kurda hebû , dema xortekî ji xwe re jinek tanî , wê rojê zave dibû Sultan , çi bixwesta xorta jê re pêktanî . lê roja dawî dibû bindest , xorta çi bikira jê li ber wa dest hilnetanî .

Rojekê xortekî ji Amûdê ji xwe re jinek anî . herwekî me go ; bû Sultan . çend xortên wekî wî ketin bin emrê wî , dibên di wê rojê de , bêlûlek leşkerê Osmanlî ji Mêrdînê hatin xwar û berî dan Mûsilê , wê rojê çadirê xwe li Amûdê vegirtin .

- Xortên dora zave gotin : Ka tu çi emir dike ?

- Zava got : Herin zabitê vê bêlûkê ji min re bînin .

Çend xortan xwe dan hev û berê xwe dan çadira zabit . pêwaniyê zabit ji wan re got : Hûn çi dixwazin ?

- Gotin : Em zabit dixwazin . ( anîn cem zabit ) .

- Zabit ji wan re got : Hûn çi dixwazin ? .

- Ewan gotin zabit : Keremke Sultan te dixwaze .

- Zabit kenya û got : Sultan li Stanbolê ye ne li Amûdê ye ! .

- Ewan got : Belê îro Sultanek li Amûdê jî rabûye .

Zabit ma ecêbmayî ji ber ku ev adet nizanîbû . ewan xortan bi zabit dan naskirin ; zavê îro bûye Sultan . Îşev piştî here nivîna xwe wê ji Sultanyê bikeve .

Zabit rabû serxwe û berê xwe da mala zave , hat cem û pate jê re lêxist , ku tu çi emir dike Sultanê min .

- Zave got : Ez çil mecîdî ji te dixwazim .

-Zabit got :Ser çava .(vegerya nav leşker û çil mecîdî dahev û anî ji zave re ) .

Piştî ku li ber danî , zabit awirek tûj dayê û got : Sibe , îşê te li cem mine .

Zabit vegeriya nav leşkera . dibên nîvê şevê emir hat jê re ku aniha bimeşin û berê xwe bidin Mûsilê . wê şevê bêlûka leşker barkir û berê xwe da Mûsilê .

Piştî salekê emir ji wî re hat ku vegerin Mêrdînê . bêlûkê çadirên xwe danhev û berî dan bajarê Mêrdînê . piştî çend rojan gihan Amûdê û çadirê xwe vegirtin . zabit çend leşker şandin ku wî Sultanê nerast bînin . ( zabit ma li bendî wan ) , nefer hatin mala wî go : Keremke zabit te dixwaze .

- Zave got : Ez sultanim . çawa zabit mi dixwaze ?! .

Divê aniha hûn zabit ji min re bînin .leşker hatin cem zabit û wisa jê re gotin. Hema zabit rabû ser xwe û qamçîyê xwe kire destê xwe û berê xwe da mala zave . zave dîsa li ser doşekê rûnişt . zabit hat , bi xezeb jê re got : Ey Sultanê nerast , çima mi şand dû te û tu nehat ?! .

- Zave got : Di hedê xwe de bimîn , bi Xwedê ez hê Sultanim û nêzîkî bûkê nebûme , eger tu bawer nakî , bela çend pîrek bên û lê binerin ku ev bûk heta niha ne qîz be , heqê te li min heye .

Zabitê min ; merivê çil mecîdî ji zabitekî wek te bistîne , divê hesabê wî bike , bi Xwedê hê ez xortim û ew jî qîze .

Wê çaxê zabit bawer kir û pir kêfa xwe jê re anî û got : Madam ev salek bihurî , hê tirsa min di dilê te de ye , ew pere li te xweş helal , tu û bûka xwe bi pîrozî û xweşî bi hev re bijîn .

……………………………………………………………

# 24-Behwer bik yan behwer mek

Di cenga cîhanê a yekê de , pêlek ji leşkerê Rûsya Qeyserî derbasî wlatê Kurdistanê bûn . gelek ji gundên Serheda , gundê xwe berdan , ji ber leşkerê Rûsa , pengizîn û bi çol û devera ketin . di wê çaxê de , şer di navbera Rûsan de xwe bi xwe çêbû , di nav partiyên Belşevî û Menşevî de . leşkerên Rûsan vegeriyan welatê xwe . lê gelek ji Kurdan bi maltî bi xwe re birin .

Dunya sermaye , zozanê Serheda ji berfê sipî weke hêke , û kuflet û eyal bi rê ketin . bi rê de Zero jina Cangîr , zana wê hat . Zero gote mêrê xwe Cangîr ; dikim bizêm , ka çawa bikim ?

- Cangîr hate cem zabitê leşker û jê re got : Efendim , jina min dike bizê , ez hêvîdikim tu bê û demançakê di serê wê de berde û wê ji vî halî xelas bike .

- Zabit go : Na bira , na bira ! … bila pîrekek bi Zero re bimîne heya bizê û paşê  wê zarokê li wî cî bihêlin û bên .

Cangîr bang pîrekekê kir . pîrek û Zero li ber zinarekê rûniştin , heya Zero li za . lawek jê re çêbû , ew zarok di nav paçikan de pêçan û li ber wî zinarî hiştin û dan ser rê û gihan komê .

Hatin welatê Rûsa , Zero û Cangîr ketin nav mala yekî Keşe . Cangîr bû berdestkê keşe û Zero bû xizmetkara hundir . çend salan man .

Salekê ( fehsa ) kurê keşe çêbû . kurê keşe ji Cangîr re got : Cangîr tu û Zero ji min re du’a bikin , eger ez ( şehadê ) bistînim hûn çi bixwazin , ezê bikim ku bavê min bide we .

Dibê kurê keşe ( necihî ) û şehade stand . gote Cangîr ; ka hûn çi dixwazin ?. Cangîr got : Ez hêvîdikim ku hûn destûra me bidin , emê herin welatê xwe .

-keşe gote Cangîr : Ezbenî tişteî dî ji xwe re bixwazin , vêga welatê we xerabe ye , ji hov û teba pêve kes têde nîne . keşe kir û nekir , herdûwa qîma xwe nanîn , ji çûna welat pêve .

Keşe rabû , du tûrên mezin tijî nanê ( baqismat ) kirin , dan milê Zero û Cangîr û her yekê deh zêr jî dan wan û herdû bi rê ketin , berê xwe dan welat.

Zozan tev av û kanîne , nanê wan pire , dibê nêzîkî cihê wî zarokî bûn . Zero rûnişt û giriya û got : Cangîr li ber wî zinarî min lawikê xwe hişt , bi Xwedêkî ka em herin , belkî em wan paçikê me lê pêçabû , em bibînin , ezê wan paçikan bîn bikim .

Cangîr bi aqilê Zero kenya û got : Ev pênc sal buhirîn , paçik û lawik ji kû mane ! .

Dibê hatin ber zinarekî wek devşikeftekê di nîva zinar de ye . Cangîr li wê şikeftê nerî , ku kurikek pênc salî di wê şikeftê de ye û pezek kovî li ce mexel hatiye . Cangîr go ; Zero mizgîna min li te va kurê me di vê şikeftêde ye .

Dema çavê Zero li kurik ket , bê hiş ket erdê . Cangîr ket şikeftê bi qirika lawik girt û ji şikeftê derêxist . kurik kir be’a-be’a wek tebayê kovî , yan gazî diya xweyî kovî kir ! .

Peza kovî , li dorê diçî û tê dike be’a- be’a , lê ma , wê çi bike ?! .

Em dirêj nakin , lawi bi xwe re anîn Serheda gundê xwe , lê herwekî keşe got , dîn ku Serheda xerabe ye , kes di wan gundan de nîne .

Roja dî , herdû bi rê ketin hatin gundê Êzîdîya ji e’şîra Xalda û ew û kurê xwe li wir bi cih bûn .

…………………………………………………………………

# 25- Hisên axayê Zîlî

Hisên axa , mazinê e’şîra Zîla bû , e’şîrek mezin bû , tev koçer bûn, xwedî êl û pez bûn . havîna diçûn havîngeha Zozana , dema dunya diket serê zivistanê dadiketin germiyana , ber delavê behra Wanê .

Salekê , serê zivistanê , ji Zozana daketin ber lêva behra Wanê , şahê Ecem bihîst ku keçek Hisên axa heye , sipehîbûn ji kesî re nehiştiye .

Rojekê şahê Ecem û wezîrên  xwe hatin mêvanê wî , ku keça wî ji kurê xwe re bixwaze , lê hayê Hisên axa nîne ku ji bo keça wî hatine .

Hisên axa rabû çend berx serjêkirin û firavîna wa çêkir , dema ku firavîn danîn ber wan ,ew firavîn nexwarin ji bo ku tiştê ku ji mezûvan bixwazin mezûvan pêk bîne .

Hisên axa ma heyirî , gote wan ; çima hûn firavîna xwe naxwin ?! ..

Şah gote Hisên axa ; eger tu keça xwe bide kurê min , emê bixwin , û eger tu nede , em naxwin û emê herin mal .

- Hisên axa , çend yextiyarên xwe danhev û bi wan şêwirî ka çi bikin ? .

- Ewan rîsipiyan jê re gotin : Ey Hisên axa , bi Xwedê divê tu keça xwe bide kurê wî , eger tu nedî wê pez û terşê me li Zozana di bin berfê de qir bibe , ji ber ku şah nema dihêle em zivistana bên behra Wanê .

Hisên axa , mecbûr bû û gote şah û wezîran , keremkin firavîna xwe bixwin , min keça xwe da kurê Şah .rabûn firavîna xwe xwarin û mehra keça Hisên axa li kurê Şah birîn . piştî sê rojan guhestin .

Çima tu nabê , dilê keça Hisên axa û Elî axa yê Şikakî di hev de heye . lê hayê Elî axa yê Şikakî ji vê meselê tune , ku şahê Ecem keçik guhestiye .

Şahê Ecem qesrek bilind di nav bax û rezan de ji bo kurê xwe û bûka xwe ava kiriye û herdû di wê qesrê dene .

Bû serê havînê , berf hiliya , Zozan xweş bû , tev bû nefel û giya , e'şîra Hisên axa karê xwe û barkirinê kirin , ku berê xwe bidin Zozana .

Keça Hisên axa , hate ser banê qesrê bi dûrbînê li êla bavê xwe nerî , dî ku bardikin û berê we dane Zozana , wê çaxê kela girî hilanî û li ser halê xwe got :

Keça Hisên axame ,

Ez rebena Xwedê , pêlê avê kanîya me ,

Ez rebena Xwedê , pêlê belek berfême ,

Hayê , li min hayê ……..

Lo lo bavo , bela tu xêrê bike ,

Xêrê bi serê çavê xwe nebîne ,

Bela tu heft cotan bixirîne ,

Û genimê sor biçîne ,

Li şûna genimê sor , zîwana reş hilîne ,

Bela tu ji herdû çavan kor bimîne ,

Tûrê parsê li milê xwe bike ,

Mal bi mal bigerîne ……………

Çawa te ez nedam , Elî axa yê Şikakî ,

Siwarê dêlî , hûcanê binê vê beriyê ,

Qehremanê Kurdistanê ,

Hayê ……li min hayê ……..

Çawa te ez dame lawê sebavê mîrê Ecemoka ,

Welatê xerîb û xirbetê , hawara Elî axa yê Şikakî ,

Ez êsîra destê Ecemoka li darê vê dunyayê ,

Hayê ….. li min hayê …………

Koçerê me barkirin , berê xwe dane Zozana welatê Serheda ,

Weyla li te pepûkê Sultanê , tu tenê li şûna wara mayê …… ,

Hawara Elî axa yê Şikakî , ma tu di hawara mi êsîrê nayê … ,

Hayê …. li min hayê ….

Tu nabê , ku şivanek Kurd , li ber pezê xwe ye nêzîkî qesra keçkê ye . keçikê çi gotiye ewî ezber kirye . êvarî şivan pez anî mal , ji xwediyê pez re got :Ez dixwazim sê rojan ez herim mal . xwediyê pez destûra wî da .

Di wê çaxê de , Elî axa yê şikakî bi e'şîra xwe ve li berîya Şimamokê danîne û hayê wan ji bayê felekê tune . ewî şivanî berê xwe da berya Şimamokê , di ro û dankî de , xwe gihande êla Elî axa .

Hate bin konê Elî axa ,bû êvar , piştî şîvê , Elî axa got : Xwezî îşev dengbêjek heba , ku çend stran ji mir bigotana , ji ber ku îşev bêhna min tenge .

Şivan hathimberî Elî axa rûnişt û got : Axa ezê ji te re bistirêm , destê xwe da ber guhê xwe û qîrkir , bi wê sitrana keça Hisên axa , çilo li ser halê xwe gotiye ; ban kiriye , Elî axa dema sitran xelas bû , Elî axa go : Xorto ev tişt kengî çêbûye ?! .

- Go : Berya sê meha .

Elî axa sibehê rabû / 6000 / siwar bi xwe re kar kir , û bi rêberiya şivan berê xwe dan welatê şah Ecem , piştî du roja , nîvê şevê , gihan qesra kurê Şah , kurê Şah kuştin û Elî axa keça Hisên axa yê Zîlî bi darê kutek û zorê anî û li canê xwe mehr kir .

………………………………………………………

# 26- Mîrê Milla

Dibê du gundê Mîrê Milla hebûn , Mîr li gundê jorî rûdinişt , û gundê jêr keyak lê danî bû .

Keyê gund , gelek zilm û zor li gundiyan dikir , rojekê gundî hatin cem Mîr û gilîyê wî kirin . Mîr gote wan : Herin , ji xwe re yekî qenctir bibînin , emê bikin keye .

Gundî rabûn , û keyakî nuh rakirin . piştî salekê , keyê nuh zilm û zor ji yê berê bêhtir dikir . gundiyan nema karîbûn herin cem Mîr da ku gilî li yê nuh bikin . rojekê li hev civyan û gotin hev : Divê her şev em rahêjin qendîlên xwe û li dora gund herin û bên .

Şevekê , dudwa , sisya , wê Mîr bipirse , ev li çi digerin ? .. wê çaxê em dikarin bersiva xwe bidin . êvarê , piştî ro-ava , qendîlên xwe vêxistin û li dor gund çûn û hatin …. , du - sê rojan bi vî awayî . Mîr li ser dikka xwe li wan dinêre bê çidikin . rabû yek ji gundê xwe şand cem wan ka bela hin ji gundiyan bên , bê çi meqseda wane ?

Hatin cem Mîr , Mîr ji wan pirsî : We xêre , her şev bi qendîla li dora gund diçin û tên , ma we çî xwe winda kirye ? …

Gundiyan gotin Mîr : Bi Xwedê , Mîrê me , em li keyê xweyî kevin digerin . Mîr kenya û gote wan : Herin keyê xweyî kevin , dîsa bikin keye .

……………………………………………………………………..

# 27 - Layê bazirgan

Dibê bazirganek li bajarê Mêrdînê hebû , lawekî wî hebû . yê bazirgan pîr bû , kar nema jê dihat .

Rojekê ban kurê xwe kir û jê re got : Kurê min , ez pîr bûme , nema karê bazirganiyê ji min tê , îro dema te ye , divê tu rabe kar û xebatê , eger tu wisa bimîne ev mal wê xelas bibe , tê jar û belengaz bimîne .

Kurik , qîma xwe bi gotina bavê xwe anî . rabû bazirganîk ji xwe re çêkir û çend xizmetkar dan dû xwe û ji Mêrdînê daketin xwar berê xwe dan bajarê Mûsilê . ( berî rojava , wê çadirê xwe vegrin , bi şev rakevin , serê sibehê wê bidin rê ) ….

Rojekê piştî nîvro çadirên xwe li çoleke xalî vegirtin , da ku rehetiya xwe bistînin . kurik di çadira xwe de , ji xwer li wê çola xalî dinêre , dî ku şêrek bera xezalekê dide . şêr giha xezalê û kuşt , û ket ser goştê wê heya têr xwar . piştî ji ser da rê , dî rovîyekî birçî û jar li wê çolê ye , dema şêr ji ser xezalê da rê , rovî hêdî-hêdî hate ser nêçîra şêr , hestyê şûna devê şêr kevaştin , ewî jî têr xwar û zimanê xwe li dora devê xwe xist û çû .

Kurê bazirgan , dema ev tişt dî , di dilê xwe de got ; madam ( rizq ) wisa li Xwedê ye , …. Çawa şêr xezal kuşt û paşê rovîyê birçî jî têr xwar .

Ma ez li çî xwe digerim ? .. divê em vegerin mal . serê sibehê , ji xizmetkarên xwe re got : Bazirgan vegerînin Mêrdînê .

Rabûn barkirin , tev de vegeryan Mêrdînê . bavê kurik dî ku kurê wî dîsa bazirganiya xwe vegerand bajêr , jê pirsî : Çima wisa kurê min ? .

- Kurik , mesela şêr û rovî û xezalê ji bavê xwe re got .

- Bavê wî got : Hey teres , çima tu bi çavê şêr li xwe nanêre ?! .. ku tu bike û bixwe û bide hevalê xwe , lê tu bi çavê rovî li xwe dinêre , ku çavê te li nêçîra şêr be , herwekî pêşiya gotiye : ( Raste rovî nabin şêr ) .

……………………………………………………………………..

# 28 - Êzingvan

Êzingvanekî belengaz hebû , kerekî wî hebû , kerê wî seqet bû û bi guhekî bû , û bi çavekî bû , û bê terî bû .

Serê sibê diçû çiyê , barek êzing pê tanî û li bajêr difrot . rojekê barê êzingê wî di berdeye , berê wî li bajêr re , kerê xwe dajo û dibêje : Ço , Xwedê te ji çavê xeraba biparêze .

Merivek di ber re derbas bû , dî ku êzingvan wisa dibêje . meriv li kerê wî nerî û got : Apo , ma kîjan mal-xerab wê kerê te çavînî bike ?! . …

- Êzingvan lê vegeran û got : Kurê min , ez dizanim , yên wek te kerê min çavînî nakin , lê ji pare binêre , wa merivekî wek min belengaz êzingê xwe li ser milê xwe danîne , yên wek wî , wê kerê min çavînî bikin .

……………………………………………………………………

# 29 - Cengebaz

Dibê carekê yekî mêrxas û cengebaz hebû , bi bîst û şeş ( 26 ) awayê cengê zanîbû . rojekê xortek hate cem û gote wî, mi divê tu mi bie’limîne awayê cengê .

Cengebaz rabû ew xort bi bîst û pênc ( 25 ) awayê cengê e’limand , awak tenê ji xwe re hişt .

Ew xort bi awayê cengê bi deng ket , di wî zemanî de , kesî nema karîbû pê re cengê bike .

Rojekê ji roja hate cem mamostayê xwe û şer jê xwest . mamosteyê wî rabû û pê re şer kir bi wî awayê ku ew ne  e’limandibû  , zora xort bir û li erdê xist . xort pir ji ber xwe fedî kir .

Yê cengebaz ( yanî mamosteyê wî ) jê re got : Eger te şerm bikira te cengebazî ji mi nedixwest , ma ew  te’lîma mi nayê bîra te , mi zanîbû wê rojek bê tê vê dawê li mi bike , ji ber ku insan şîrê xav xwariye , qencî zû ji bîra wî diçe .

…………………………………………………………………
…..

## 30 - piştî tengayê firehiye Û piştî firehyê tengiye

Dibê , di hiyamê Mîr Zeynidîn de , li bajarê Cizîrê yekî dewlemend hebû , ewê dewlemend , tim bazirganiya wî li welatin dûr bû , wek Hind û Çîn û Maçîn .

Carekê mal ji welatê xwe birye welatê Çînê , piştî malê xwe firotiye , qezencek pir kiriye . rojekê daketiye bajêr , fincanek ferfûrî dîye , ku di rengê wê fincanê çêtir nînin ji ber ku bi kevrê dur û elmas hatiye neqişandin . rabû ew fincan bi çil zêrî kirî û go ; ezê ji Mîrê Botan re diyarî bikim .

Vegerya welat , wextê ji kelekê peya bû , ew fincan ji bêrîka wî kete çemê Dicle , ban yekî avjenî kir û jê re got : Li vê hindamê fincana min ket avê , bi gotina xwe re , bi gustîla tilya xwe jê re şanî da , û gustîl jî ket çem .

Yê avjenî bi nîşana gustîlê xwe noqkir avê , fincan derêxist dît ku gustîl jî di nîva fincanê de ye . dema yê dewlemend ev tişt dît , rabû giriya .

-Yê avjenî jê re got : Çiqasî siûda te heye ; çawa gustîl têkev nîva fincanê ?! .

- Yê dewlemend got : Xwedê min bistirîne ji îro û pêve , ez bawerim dewlemendî û siûda min sînor jê re nema , ez ditirsim ku tengayek mezin bi ser min de bê .

Yê dewlemend hat mal , lê dil bi tirse . piştî sê rojan berê xwe da dîwana Mîr Zeynidîn mîrê Botan , û fincan jê re pêşkêş û diyarî kir .

Mîr pir kêfa xwe bi wê fincanê anî û sipasiya dewlemendî kir . ya dinî rojê , Mîr herdû wezîrên xwe û Beko Ewan , hersê ezimandin ser qehwê . qehwe kir fincanê da destê yekî , ewî vexwar . dîsa fincan dagirt da destê yê dî , wê çaxê dibê Beko Ewan keniya .

- Mîr go : Çima tu dikenî ? .

- Go : Mîrê min , ewê ev fincan ji te re diyarî kirîye henekê xwe b te kirye , ji ber ku destê fincana duwazdene , yan jî şeş nîv deste , evî merivî yek tenê ji te re anîye, wê yek vexwe , yê dî li bendene wê lê binerin , ev eybeke mezine.

Mîr bahwer kir û şande dû yê bazirgan û jê re got : Ez pênc fincana wek vê fincanê ji te dixwazim . yê bazirgan got : Mîrê min , bawer bike eger çend wek vê fincanê heba minê ji ter anîba .

- Mîr go : Ez nizanim , divê tu pêncê dî peyda bike , sê meha ezê yefşê bidim te , eger te nanîn mal û milk û qûnaxê te wê ji te bê standin .

Bazirganê bextreş berê xwe da welatê Çînê , çiqas gerya û pirsî wek wê fincanê peyda nekir , polî-poşman vegeriya bajarê Cizîrê , dest vala hate cem Mîr .

Mîr rabû fermanek derêxist û milk û mal û qûnaxêd wî tev de têkevin bin destê dewletê û bi şima sor deyê wî mohr bikin û wî jî bêxin zindanê . ( bê sûc û guneh salekê di zindanê de ma ) .

Sibehekê xwarna hebsiya anîn li ber danîn segê - midîrê hebsê - ji tevda hat lingê xwe hilda û bi ser xwarna wî de mîzkir . merivê wê zindanê hemû li halê wî giriyan , belê ew bixwe pir kêfa wî hat û zanî ku ji vê tengayê bêtir nema çêdibe , piştî vê tengayê firehiye .

Ya dinî rojê şand dû jina xwe û jê re got : Here mala filankesê dostê min , çend zêra jê bistîne û kilsê bikir û qûnaxê me wek berê sipî bik . jinkê çû çend zêr anîn , kils kirî , çend karker anîn , qesr û qûnaxêd xwe sipî kirin .

Hayê Mîr giha vî tiştî . rabû şand dû yê dewlemend ji zindanê û got :Kê destûra te da ku tu qesr û qûnaxêd xwe sipî bike , piştî ku me reş kir bû . yê dewlemend rabû tiştê ku pê re çêbû ji pêşî heya paşî ji Mîr re got .

Wê çaxê Mîr rabû ew efû kir û birc û qûnaxê wî lê vegerand .

…………………………………………………………………….

# 31- Kurê serserî

Dibê yekî têr û dewlemend li bajarê Amedê hebû . kurekî wî hebû , nezan û serserî bû , çiqasî şîret lê dikir bê fêde bû , û badîhewa bû .

Yê dewlemend naskir ku kurê wî sermiyan jê çênabe , û ev mal û zêr wê tevdî bi der bide , wê bide serserîyên wek xwe . bavê wî rabû qubek li ser xanîyên xwe çêkir û ew qub tijî zêr kir , û werîsek li ber beşt girêda , serê werîs gihande zêra , kir wek meşneqakê û kursiyek

li bin danî bi awakî wisa ku rojekê kurê wî serê xwe têxe wî werîsî berî ku ruh jê here wê werîs bifilite wê ew bikeve erdê , ew zêr hemû wê bi ser de bêne xwar . mifta wî xanî da jina xwe û go : Divê tu miftê nede kurik .

Piştî çend sala yê dewlemend mir . kurik rabû ew zêr û milk û mal tev de li serserîya belav kir , heya tu tişt li cem nema . hevalên wî tev de bi malê wî bûn xwedî mal , ew ma belengaz .

Rojek ji rojên buharê , hevalên wî lê civiyan û gotin : Emê piştî nîvro herin nêv bax û bistana seyrangehê , her yek ji me wê xwarinekê bîne .

Kurik go : Xemnake .

Hevalên wî li pêşya wî çûn , ew jî rabû li bêrîkên xwe xebitî , dî ku du qirûş pere ne . rabû wî jî kezebek reş kirî û rê girt ku bê cem wan , bi rê de destava wî hat , kezeba xwe li ser kevirekî danî û çû serdestavê , berî ku rabe , teyrekî ji jor ve xwe berda ser kezeba wî û kezeb revand . kurik ma heyirî , ka çawa wê destvala here .

Paşê rabû çû , berî ku bighêje cem wan , dî ku pê dikenin , ku çawa destvala hatiye . kurik got : Gelî hevala , bi Xwedê min kezebek reş anîbû , lê teyrekî hat û revand . hemû bi gotina wî keniyan û gotin : Çawa teyr kezebê birevîne û bixwe ?! .

Kurik pir şermîsar bû . wê çaxê mirina xwe xwest . piştî vegeryan mal , kurik xwest xwe bikuje , miftê xaniyan hemû ji diya xwe standin û gote diya xwe here nav mala , dixwazim bihnekê rakevim . diya wî çû mala cîrana . kurik rabû bi xanîyan ket , deryê xanîya tev de vekir , derîyê xanîyê ku bavê wî meşneqa wî têde çêkirye vekir , gelekî keniya û kêfa xwe anî û got : Bi Xwedê bavê min zanîbû wê rojek bê ezê xwe bişeniqînim . ewî berî mirna xwe ve meşneqe ji min re danî ye , hema rabû û serê xwe kir werîs û lingê xwe li kursîyê da , ruh şêrîne pir li ber xwe da , lê berî ku ruh jê here

, werîs filitî û kurik ket erdê bê-hiş , ew zêr tev de bi ser de rijiyan …..

Hişê wî hate serê wî çi bibîne , ku barek zêr li ser laşê wî ye ! . kurik rabû serxwe , ew zêr tev de di cîkî de hilanîn , diya wî hate mal , kurik rahişte du zêra û berî da sûkê ku tiştna ji xwe re bikire . hevalêd wî hatin dorê kêfa xwe jê re anîn gotin : Bira , qey perê te hene ?! …

- Ewî got : Mala dewlemenda ji pera xalî nabe , paşê gote wan ; gelî hevala hûn sibe li cem min mezûmin . rabû du pez kirîn . ya dinî rojê xwarinek pir çêkir . hevalên wî hatin , ew jî kete nav bajêr gelek feqîr û belengaz anîn ber dîwarê qesrê .

Piştî xwarin çêbû , xwarin danî ber wan û got : Gelî hevala duh mi susretek dît , bavê minî rehmetî di saxbûna xwe de xanîyek tije hesnê pola kirbû , duh min ew xanî vekir çi bibînim , ku mişka nîvê wî hesnê pola xwarine ! .

Hevala go : Raste , xweziya mişka ( girêza mişka ) dema dikeve ser hesin , dibe wek penêr û dixwin .

Kurik rahişte darekî û kete nav wan , û got : Kurêd seha , wexta ku min got teyr kezeb xwar hûn tev de bi min kenyan , û we got ; çawa teyr kezebê bixwe . ji ber ku wê çaxê ez feqîr bûm , lê îro dema perê min çêbûne min ji we re got ;mişka hesnê pola xwariye , hûn tev de dibên raste . de rabin bi Xwedê we ji vê xwarinê nexwar . berra wan da û belengaz li wê xwarnê civyan û xwarin . kurik nuh aqlê xwe nas kir , ku mervê bê mal tim derewîne , eger rast bêje , û merivê zengîn tim rastgoye , eger çiqasî derewa bike .

Herwekî hatiye gotin :

Belengaz hemû kes neyarê wî ye

Lê ew nizanî sebeb ma çiye

Ji  dûr ve kûçik qesdeya wî dikin

Kirasê li bejnê ji hev pardikin

Belengazê rastgo çi bêje welew

Hemû kes dibêjn ne waye derew

Lê zengîn eger go çiya çû çerê

Wekî min gelek jê dikin bawerê .

…………………………………………………

## 32 - Xanîkê pîrê xweştire Ji birca mîrê Cizîrê

Pîrejinek hebû , di nav mala mîrê Cizîrê de bû , her diranekî wê tihamek dixwar , lê xanîkê wê tucarî ji bîr ne diçû , herdem bi axîna xanîkê xwe bû .

Mîr digotê : Pîrê tu di Birca-Belek de ye û tu kêfxweşe , ma ew xanîkê rût wê çibike ji te re ?! …..

Pîrê keser veda û got : Ax xaniyê min .

Mîr got : Pîrê fermo here xanîkê xwe şevekê tê de bimîn û were .

Piştî ku pîrê da rê , mîr peyakî xwe bi dû de şand , jê re got ; tê here xanîkê pîrê bibîne û tê vegere . peya bi dû de çû heya xanîkê wê , xanîkê teng bi kelpîça hatiye avakirin , pîrê avreşand kir û merşê xwe raxist û li ser palda û got : ( Of yan , of yan , xanîkê pîrê xweştire ji birca mîrê Cizîrê ) .

Peya vegerya , tiştên ku dît û bihîst , ji Mîr re got . Mîr lê vegerand got ; heqê pîrê heye ji ber ku azadiya xwe di wî xanîkê xwe de distîne .

……………………………………………………………………..

# 33- Her kezî zerek , simbêl sorek li bendê ye !

Dibêjin Mîrê Hekarê êla xwe daye hev , da ku êrîşî êla Botan bike . xortek , lawê pîrekê bû , bavê wî tune bû , ewî jî karê xwe kir , ku here ser êla Botan . diya wî jê pirsî û got : Tu bi kûve here kurê min ?! .

- Xort lê vegerand û got : Mîrê me wê êrîşî êla Botan bike , û ez jî qîzekê ji qîzê Bota bînim .

- Diya wî got : Kurê min “ her kezî zerek , simbêl sorek li bendê ye “ , keçê xelkê ne berdayîne .

Xort bi ya diya xwe nekir û çû ….. piştî êrîşî êla Botan kirin , lê mixabin di şer de şikestin , û êla Hekariya jimeydanê revyan . ew xort , di destê yekî girs û bi qelafet û simbêl sor de hêsîr bû . dema ew xort danî erdê ku wî bi xincerê serjêke . xort di ser xwe re nerî , dît ku simbêlê wî sore .

Axînek ji dilê wî hat û got : Ax yadê min bi a te nekir ! .

Mêrik jê re got ; kuro ! ma diya te çi ji te re gotiye ?

-Xort got : Diya min got ; kurê min neçe ji bo gumanên xwe , qîzê xelkê ne li çolane …. “ Her kezî zerek , simbêl sorek li bendê ye “ .

- Dema xort ev tişt got , mêrik xincer li ser stûyê wî rakir , û gotê : De rabe ser xwe , min te daye xatirê peyva diya te .

…………………………………………………………………

# 34 - Şoreşa Şêx Seîd

Di sala / 1925 / a de , dema şoreşa Şêx Seîd vêket , û şerê Turka kir , Fexrî kurê Şêx Xalid , şêxê Zîla ewî jî alîkarî bi şoreşê re kir , û bû endamek ji endamên wê . lê mixabin piştî ku şoreş şikest , Şêx Seîd û hevalên xwe hatin girtin û Fexrî jî bi wan re bû .

Şêx Xalid bihîst ku kurê wî jî hatiye girtin , hate Diyarbekir mala zabitekî , berê hevdû nas dikirin . yê zabit gelek qîmet da Şêx Xalid û jê re got : Te xêre şêxê min ? .

- Şêx Xalid got : Ezbenî kurê min Fexrî bi Şêx Seîd û hevalên wî re hatiye girtin , eger tu karibe hawakî jê re bike , ez qenciya te jibîr nakim .

- Zabit got : Çi tiştên ji min bê , ji bo xatirê te ezê bikim , de sibehê ezê herim Enqera û bi Kemal Paşa re rûnim , belkî ez efwa wî bînim .( ya dinî rojê zabit bi rê ket û berê xwe da Enqera ) .

Zabit rûbarî Kemal Paşa ket û qiseta Fexrî jê re got : Ey serdarê bilind , Şêxê Zîla ne neyarê me ye û dûrî topraxa Şêx Seîd de , hinka bi kurê wî hilda ku ew jî bi şoreşê re bû , û divê em her kesî nekin neyarê xwe .

- Kemal Paşa got : Daxwaza te çiye ?

- Zabit lê vegerand û got : Min divê tu wî berde .

- Kemal Paşa got : Xemnake , ezê aniha reşbelekekê bidim te , tê bide hakimê ( Istiqlalê ) , dema ku Fexrî mehkeme bike û jê bipirse tu çi kese ? , bela Fexrî bêje ez Turkim , û bela here mala xwe û ne virde û ne wirde .

- Yê zabit bi kêf reşbeleka Kemal paşa anî û da hakim û hate mal . mizgînî da Şêx Xalid go : Mi efwa Fexrî anî .

Roja mehkemê , ku hakim jê bipirse bû tu çi kese ? , bela bê ez Turkim , û bi te re bê malê .

Ya dinî rojê Şêx Xalid hate dergehê zindanê û kurê xwe xwest û jê re got : Kurê min dema tu anîn mehkemê û ji te bipirsin , bêje ez Turkim , tê bê berdan .

- Fexrî got : Bavo xemnake , ezê bêjim ! .

Piştî çend roja Fexrî anîn mehkemê . hakim jê re got : Tu çi kese ? .

- Fexrî got : Ez Kurdim .

Hakim li reşbeleka Kemal nerî û li wî nerî û dîsa lê vegerand ; ( oxlim ) tu çi kese ? .

- Fexrî go : Zimanê xwe bi xwe bigir , ez Kurdim , ma ne gunehe û şerme ew diya min ya paqij û temîz , ku ez vî gunehê giran têxim stuyê wê , ku ez bêjim ez Turkim , manaxwe ez bêjîme , ku diya min ji Turka ez anîme ,û wa ez bi xwe darsêpîyê dibînim û sed merheba bi mirina mêranî .

Ew jî birin û şeniqandin .

Madam box û beranê wek Fexrî di nav milletê Kurd de hene , Kurd tucarî namirin .

………………………………………………………………………
…

# 35 - Belengaz û du rêwî

Dibê yekî belengaz hebû , kerekî wî baş rehwan hebû , ji xwer pê kar dikir û rizqê zarokên xwe pê dida hev .

Rojekê li kerê xwe siware û ji gundê xwe dire gundekî din , rastî du peyan hat , û derbas bû .

- Yekî ji wan got : Ax xwezî ev ker yê mi ba .

- Yê dî lê vegerand û got :Ma tu dixwaze ,em kerê wî jê bistînin ? .

- Hevalê wî got : Erê Willeh .

- Go :Biner ezê aniha bankimê , wê bisekine , ezê herim cem û ezê bi serê ker bigrim û bêjim ; ev ker kerê mine . ewê bêje na kerê mine , emê bi hev re bikin qerebalix , tê bighê me , ezê bêjim ; filan li ser bextê te be , ev ker ne yê mine ? , tê bêje belê ; li ser bextê mi û bavê mi ev ker kerê te ye , bi vî awayî emê ker jê bistînin .

Mêrik banêkirê , go : Bira , bi Xwedêke bisekin , îşekî min li cem te heye . rebenê belengaz sekinî .

Mêrik giha cem û bi serê ker girt û got ; ev ker kerê mine . yek ji wî , yek ji ê belengaz , hevalê wî giha cem wan . hevalê wî jê re got : Filankes , li ser bextê te be ev ne kerê mine ? .

- Hevalê wî lê vegerand û got : belê , li ser bextê min û bavê min be , ev ker yê te ye .

Bi vî awayî kerê belengaz jê standin . wek du sed mitrî bi dûr ketin . xwedyê ker ban yê ewilî kir û got : Law ez feqîrim , ji bo Xwedê hûnê kerê min bidin min , zarokên min birçînin . bi Xwedê , heya bextê te ev bext be û şahidê te jî hevalê te be , ker ji wer pirin .

Rabûn herdû kenyan û kerê wî lê vegerandin .

………………………………………………………………………..

# 36 - Xortek û keça keye

Dibê xortek dilê wî di keçek keye hebû . rojekê ji diya xwe re got : Divê tu here keça keye ji min re bixwaze .

Diya wî go : Kurê min , keça keye ji me re nabe , em merivin belengazin û keça keye delaliye , ka ezê keça apê te ji te re bînim , wek me ye , em çi bixwin , ewê bixwe , lê keça keye divê tim xwarina xweş bixwe û tu karî nake , ji me re nabe .

Kurik ji ya xwe daneket û çûn keça keye xwestin . keça keye serê sibehê wê rahêje kil û mirêkê wê çavê xwe kil bike û porê xwe şeh bike .

Xort radibe hundir rêjdike , rok-dudo -sisê ,… diya wî got : Te em di nav gunde hetikandin , tu hundir rêjdike û qehwê jê re çêdike . sibe ezê bêm û melkesê  ji destê te bigrim û ezê bêjim , ezê hundir rêjkim , û tu bêje na dayê  ezê  rêjkim , belkî pozê wê bişewite û rabe hundir rêjke .

Bû sibe, diya wî hat melkes ji dest girt û got : Kurê min e'ybe , ezê ji dêvla te rêjkim . bû qerebalixa wan . keçik xeyidî û got : Bes we em gêjkirin , rojekê tu rêjke û rojekê diya te rêjke .

Diya wî rahişt melkesê hundir rêjdike û di ber re nuhirand û got :

Rabûm bi lez û bezo

Mi tê-da mal û rezo ,

Sivka malê cardî ezo .

……………………………………………………………………
……

# 37 - Aqilê  xwe ji kûçkê xwe naskir

Yekî kurd li Elmanya hebû , pir dewlemend bû , xwedî dikan û kemyon û teksî bû .

Hinek xortên Kurda , dema diçûn Elmanya , diçûn cem û jê re digotin : Emê karê te bikin . qîma xwe ne tanî û berra wan dida , hinin xerîb tanîn ji bo karê xwe .

Kûçikekî wî hebû , serê sibehê selik dikir stûwê wî û pelek qaxez dixist selkê , ka çiqa nan dixwaze . rojekê kûçik nan anî , ewî nan hejmart dî ku nanek kême , roja dî wilo , roja dî wilo ……. , rokê qere-qere bi dû kûçikê xwe ket , ku çi dike ji vî nanî ?! .

Kûçik dema ji firnê derket û selka nên di stûwê wî de ye , kûçik rêke dî girt û meşiya , mêrik jî bi dû de ye , bi dû de dimeşe , dûr-nêzîk , dît ku kûçikê wî kete çalekê , piştî ji çalê derket berê xwe da mal . mêrik berê xwe da çalê , dî ku kûçikekî pîr û nig şikestî di wê çalê de ye û nanek li bere . wê çaxê naskir ku hero nankî dide wî kûçkî .

Mêrik rabû bi xwe ket , wey li me , ma ez wek vî kûçkî jî nayêm , biner bê çawa nanê min dide vî kûçikê pîr û birçî ,ji ber ku ji milletê wî ye . ji wê rojê pêve berra wan xerîba tevda da û Kurd anîn cem xwe û şuxilandin .

……………………………………………………………

# 38- Cemîlê Seyda

Cemîlê Seyda şoreşgerekî bi nav û deng bû , dibê şevekê ew û çend hevalên xwe li ser çiyakî bûn , dinya zivistane , berf li erdê ye , Cemîl ji hevalên xwe re got : Ez ji serma qefilîm , eger hûn bihêlin ezê herim vî gundê li quntara çiyê , xwe germ bikim . hevala destûra wî dan .

Cemîl daket xwar hate wî gundî , dinya şeve , berfê girtiye ber derya . Cemîl got ; ma ezê vê şevê kê ji xew rakim , ya qenc ewe ez herim mizgeftê . berî da mizgeftê ,derî vekir dî ku çirake hûr li mizgeftê

vêketiye û darbestek têde ye . yekî mirî li sere û mitêlek bi ser dakiriye .

Cemîl xwe li tenişta wî mirî ramidand û mitêl biser serê  xwe dakir û got : Bira tu li cê xwe û ez li cê xwe . Cemîl ket xew .

Berbanga sibehê melayê gund hate mizgeftê û bang da , derê mizgeftê vekir , Cemîl ji xew çeng bû , û go : Seyda ma bûye sibeh ? .

- Seyda go gurm û li erdê bêhiş ket .

Gundî hatin mizgeftê , dîn ku mele li erdê ye û Cemîl di ser wî re şipyaye , av anîn li ser riwê mele kirin ,  mele bi hiş xwe ve hat û rabû reviya û got : Gidyano , mirî hate min , mele ji wê rojê de dîn bû .

…………………………………………………………………….

# 39 - Roviyê Se’do

Se’do li gundê Gurig cotkarî bû , her sibeh diçû cot . roviyek hogirî wî bibû , dema taştiya Se’do dihat , rovî dihat hember wî rûdinişt .

Piştî ku taştiya xwe dixwar , xwarina mayî li ber rovî datanî , rovî jî dixwar û diçû sersedê mexel dihat .

Wextê ku Se’do cotê xwe berdida , nîr û e’bûrê xwe tev de li ser erd dihiştin.

Sibehekê Se’do hate cot , dî ku rovîyê wî dûrî wî diçe … dilê wî xerabû ,… go ; ev çi bela rovî ye îro  ku dûrî min diçe , û li min dinêre ?! .

Se’do , piştî ku cotê xwe girêda , dî ku qayiş û paşîqayiş herdû hatine xwarin. Se’do nuh naskir , ku rovî herdû xwarine .

Se’do go : Mîrat mi zanîbû ku vê sibehê qûnşile , yeqîn te qayiş û paşîqayiş herdû xwarine .

Divê meriv tucarî nebe hevalê xayina .

…………………………………………………………………..

# 40- E’loka mele

Rojekê ji rojê zivistanê dunya barane , mele ji jina xwe re got : De rabe vê e’loka me serjêke û ji me re bike şîv , ji ber ku dunya barane , tu mêvan nayên .

Jinik rabû e’lok serjêkir û birincek taze li ber çêkir . êvarê ber roj-ava rahişte mersefê ku li ber mele deyne , ji nişka ve mêvanekî wanhat , go : Êvara we bi xêr .

Jinkê rabû , hema merkeb hilda û şîv kir bin merkebê , belê yê mêvan dît û bêha birinc û goştê e’lokê kete bêvla wî , mêvan rûnişt .

Mele ji jina xwe re got : Ka te çi şîv çêkir ye ? . jinkê got : Mi tiştek çênekir ye . jinik rabû tasek dew û nanek li ber mêvanê xwe danî . mêvan parîk- dudo xwarin û destê xwe ji xwarinê kişand , û go : Xwedê zêde bike .

Wê şevê şevbihêrka xwe kirin , cê mêvan nêzîka merkebê danîn , û cihê xwe li hêla din danîn . piştî mele û jina xwe ketin xew , yê mêvan hêdî bi çarpiya hat merkeb hilda û kete ser goştê e’lokê û birincê têr xwar , paşê çaroxa mele li ser birinca mayî danî û hat ser cihê xwe û xwe ramedand û kuxya .

- Mele şiyar bû , go : Mêvanê delal tu hê şiyare ? .

- Yê mêvan go : Belê .

Herdû qasekê bi hev re mijûl bûn . mele ji mêvan pirsî : Navê te çiye ? .

- Go:Navê min Osmane . mêvan ji mele pirsî:Go seyda emrê te çiqa çêbûye ?

- Mele go : Nêzîkî çil salî .

- Mele ji mêvan pirsî : Ka emrê te bûye çi ? .

- Mêvan got : Ez bi xwe nizanim , lê diya mi rehma Xwedê li miryê te be û lê be ; tim ji min re digot : Sala ku Osman paşa , êrîşî keleha E’lo begê kir û E’lo beg  jê derxist û çarox beg li şûnê danî wê çaxê ez bi çarpiya diçûm .

- Mele fikirî , go : Bi Qurana mi xwendiye mi ev tarîx di kitêbê de nediye .

- Mêvan got : Seyda sibehê qenc li kitêbê biner tê wê tarîxê bibîne .

Serê sibehê zû , yê mêvan rabû û riya xwe girt , mele rabû limêj kir û rûnişt û ji jina xwe re got : Ka wê mîrata şîvê werîn ez ji nêza ketim . jinkê berê xwe da merkebê , merkeb hilda , çi bibîne , ku sê parê goşt hatiye xwarin û nîvê mersefa birincê û çaroxa mele li ser birincê hatiye danîn . hema jinik rabû û rahişte mersefê tevlî çaroxê li ber mele danî û got ; de bixwe xwelîsero , ma ne bêbavo ji te re ta bi derzîyê vekir , ma te fêm nedikir .

ma wê melê reben çi bêje ? .    rabû nanek bi tisî pûrisand û derket .

…………………………………………………………………..

# 41- Bedir-Xan beg

Bedir-Xan beg qehremanekî kurd bû , xwediyê Birca- belek bû . li bajarê Cizîrê , xwediyê xezîne û gencên zêra bû .

Her ji sê meha , çend karker tanîn û ew xezînê zêra derman dikirin û bi bêra li hev didan , ji bo ku zingar negrin .

Dibê rojekê , çend karker anîn ku zêra derman bikin , leşker şeropanin ( bi rêzin ) ji cem xiznê heya textê Bedir-Xan beg .

Yekî ji karkera got : Ji xêra Xwedê re , Bedir-Xan beg destûra min bida ku min bêrek di van zêra de dakira û ji xwe re bibira . ( leşker tev kenyan , heya gihandin Bedir-Xan beg ) .

Bedir-Xan beg got : Jê re bêjin , mi destûra wî da , û bêrekê tê dake û ji xwe re bibe .

Yê karker ji kêfa re , bêr zîzikand û bêrek li zêra xist tu nabê bêr bermeqlûb girtibû , ji zêrekî pêve neket ser pişta bêrê .

Bû tiq-tiqa leşkera pê kenyan , heya giha Bedir-Xan beg . Bedir-Xan beg pir kenya û got : Ku Xwedê nede yekî , ma wê Bedir-Xan beg çi bike ?! .

…………………………………………………………………..

# 42- Kirasê mele

Bû serê rojîyê , her roj gundî li dor mele dicivin û mele ( we’za ) dike , dibêje yê kirasekî bide yekî belengaz , roja qiyametê wê Xwedê deh kirasa ji Bihiştê bidêyê .

Dibê mele , kirasekî nuh ji xwe re dirûtiye û daye keça xwe ku êvara ( eydê ) li xweke .

Keça wî jî tim dibhîst ku bavê wê wilo dibêje . rojekê yekî belengaz hat devê derî , keça mele dî ku kirasekî zîvarî lê ye . dilê keça mele pir pê şewitî , rabû kirasê bavê xwe dayê .

Bû êvara eydê , mele rabû laşê xwe şuşt û ji keça xwe re got : Keça min , ka kirasê min bide min ku ez li xwekim .

Keça wî got : Willeh bavo mi kirasê te da yekî belengaz ji bo Xwedê ji kincê Bihiştê bide te .

Mele qehirî û got : Hey keça kûçka , mi ji kirasê xelkê re digot , ne ji kirasê xwe re ! .

………………………………………………………………………

# 43- Tehsîldarê kera

Dibê di wextekê de , dewleta Osmanlî bêşa kera distand . tehsîldar gund bi gund digerya , bêş distand . rojekê hat gundekî Omerya û hewş bi hewş gerya , hat hewşekê nerî tu ker lê tuneye .

Yeqîn xudiyê hewşê lingê kerê xwe girêdabû , û anîbû hundir û mitêl bi serde- kirbû . yê tehsîldar dî ku cîk li hundir hatiye danîn , ji xwedyê malê pirsî ; ev kîye di nav ciyan de ye ? .

- Mêrik go : Bavê mine nexweşe .

- Yê tehsîldar hat ber serê wî , û hêla lihêfê hilda û go : Apo tu çawayî ? .

Serê ker jê xuya bû . tehsîldar vegeriya ser mêrik û got : Çima te wilo kir ?.

- Xwediyê malê got : Ya efendim , bi Xwedê ez merivkî feqîrim , nikarim xerc û êşa kerê xwe bidim , ji bo wilo mi kerê xwe kir nav nivîna , lê Xwedê ez ne sitirandim .

Yê tehsîldar jêre got : Başe , madam ev ker bû bavê te û bû apê min , mi e'fû kir .

…………………………………………………………………….

# 44- Şêx Zengî

Dibê carekê du derwêş hebûn , bi herdûwan kerek bû , geh ew lê siwar dibû , geh ê dî . û li dunyayê digeryan derwêşî dikirin .

Rojekê li ser duriyan ( du-sê rê dighên ser hev ) kerê wan serê xwe danî û mir. Herdû man heyirî ku bê ker man , yekî ji hevalê xwe re got : Ka emê li vir gorekê bikolin û kerê xwe tê de veşêrin û emê bêjin ev gora şêx Zengî ye , emê qubekê ser çêbikin û çadirek xwe vegrin û denek av bînin û emê bêjin : Çi tawî , û çi bawî bên ser vê gorê wê rehet bibe,ji ber ku welîyekî mezin bû .

Dibê rabûn weke gotin , qubek li ser ava kirin û denek av anîn , bû ziyaret-geha tawî û bawî û nexweşa . wê çaxê bawerîk wilo hebû , xelkê ji dûr û nêzîk nexweşên xwe tanîn ser wê ziyaretê , û pere didan wan .

Ji heftê heta heftê carê yek ji wan pere distand . dilê yekî li hevalê wî xerabû , ku ji peran didize , rabû jê re got : Çima heftiya min pere pirrin û ya te hindikin ?! ….

Hevalê wî jê re got : Bira ma qey dilê te li min xeradibe ?

- Go : Belê , dixwazim tu ji min re sûnd bixwe .

Hevalê wî rabû ser xwe û jê re got : Hema bi gora Şêx Zengî ez tu pera venaşêrim .

Hevalê wî jê re got : Kuro , ma tu ser min jî bilîze , gora Şêx Zengî , gora kerê me ye ! .

……………………………………………………………………
…

# 46- Fitwa mele

Dibê yekî Berazî serê sibehê rahişt kulingê xwe û hat cem mele , go : Seyda ez dixwazim tu fitûkê bide mi . û kulingê xwe li ber mele li erdê dixe .

- Mele got : Ka çi mesela te ye ? .

- Yê Berazî got : Pezê min heye , û bûye wextê dewkilanê , meşka me tunebû , lê kûçikekî minî girs hebû , mi rabû kûçik serjêkir û çermê wî kir meşk , û em dew têde diklên , ma helale an herame ?! .  û kulingê xwe li ser serê mele dihejîne .

Mele ma heyirî , bêje herame wê bi kulinga pêkeve , go : Ezbenî helale ! .

Mêrik rabû ser xwe , go : Wey  se’ata te xweş , naxwe , nîfişkê serê sibehê wê ji melayê mi re be .